# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL Hejmar: 57 09 - 15 Hazîran 2015 basnews.com


Li Amedê ciwankariya çîniyan



R16

# Serkeftina kurdan...

Di hilbijartinên 7'ê Hezîranê de ku bi rikberiyeke tûnd kete dîroka siyasî ya Tirkiye'yê, hilbijêrên kurd bi dengdayina HDP'ê dewreke nû dane destpêkirin. Bi rêjeya ji sedî 13 deng û 80 kursî HDP'ê dawî li desthilata AKP'ê ya 13 salî jî anî.

R02

Di vê hilbijartina ku siberoja siyaseta AKP'ê û Serokkomar Erdoğan jî hate hilbijartin de, serkeftina HDP'ê bû sedemê qeyrana desthilatdariyê jî. Tirkiye niha neçarê hikumetên koalîsyonê an jî hilbijartina pêşwext e.



Mesrûr Barzanî: Referandûm mafê kurdan e R03

Rojava: Dawî li kembera ereb tê R04

Doza Licê hîn jî di nav mijê de ye! R12

Di dîroka tomarnebûyî de rêça jinan R13

## Barzanî: Destxweşiyê li HDP'ê dikim

Serokê Herêma Kurdistanê, Mesûd Barzanî piştî ku hilbijartinên Tirkiye'yê bi dawî bûn daxuyaniyek ragihand û serkeftina HDP'ê pîroz kir.

Barzanî di daxuyaniya xwe de wiha got; "Bi helkefta serkeftina hilbijartina Parlamentoya Tirkiye'yê, ez pîrozbahiyên xwe pêşkêşî gelên Tirkiye û hemû partiyên beşdarbûyên hilbijartinê dikim. Serkeftina vê hilbijartinê belge ye li ser wê yekê ku demokrasî li Tirkiye gihîştiye asteke bilind."

Herwiha Barzanî bal kişand ser serkeftina HDP'ê jî û wiha pê de çû; "Gellek jî dilxweş bûm ku kurd



yekemîn car e dikarin li rewşeke demokratîk de û di çarçoveya partiyeke siyasî de bigihê Parlamentoya Tirkiye'yê. Ev yek ji bo pêşxistina aştî û demokrasiyê destkeftiyeke girîng e. Her bi vê helkeftê jî ez destxweşiyê li serkirdatî û endam û alîgirên Partiya Demokratîk a Gelan (HDP) dikim."

Serokê Herêma Kurdistanê wiha domand: "Wek çawa berê me piştevaniya pêşveçûna pêvajoya aştî û demokrasiyê li Tirkiye dikir, piştî niha jî emê li ser wê yekê berdewam bikin. Hêvîdar im ev destkeft bibe cihê berfirehtirbûn û kûrtirbûna aştî û birayetiyê li Tirkiye û şûna zilm, înkar û cûdakariyê nemîne."

# HDP’ê pergala Tirkiye'yê tevlîhev kir




Hilbijartinên 7’ê Hezîranê ku di dîrioka siyasî ya Tirkiyeyê de wek hilbjartina ku rikberiya hêzên siyasî herî tûndtir bû kete dîrokê, bi serkeftineke berbiçav ya HDP’ê bi encam bû. HDP’ê bi stendina ji sedî 13’ê dengan hem bendê bêwate kir hem jî desthilatiya yekpartî ya AKP’ê ya 13 salan têk bir. Di vê hilbijartina ku HDP’ê 80 kursî bi dest xist de hesabên ku li ser derbasnekirina bendê ya HDP’ê jî têk çûn. Derbaskirina benda ji sedî 10 ku rejima 12 Îlonê bi taybet ji bo beşdariya parlameniya kurdan asteng bike ketibû meriyetê û ji wê rojê ve tê pêkanîn di heman demê de dikare guherîna vê rêbasa li dij demokrasiyê jî pêk bîne. Bi vê serkeftina HDP’ê her wiha hedefa 2013 û pergala serokatiyê ya AKP’ê jî ji rojeva Tirkiyeyê derket.

Di vê hilbijartina ku ji bo heyama 25. a parlamena Tirkiyeyê diyar kir û 46 milyon hilbijêran deng dan de, li gel ku zêde nakokî û pevçûn pêk nehatin de, li Bakurê Kurdistanê serkeftina HDP’ê bi coşeke mezin hate pêşwazîkirin. Di encama hilbijartinan de diyar bû ku AKP, li gel ku ji sedî 40 dengan wergirtiye jî, ji ber ku HDP’ê ji sedî 13’ê dengan wergirt hejmara parlamenên AKP’ê dakete 260’an. Weke tê zanîn AKP’ê di hilbijartina beriya vê de ji sedî 50 dengan wergirtibû û 326 kursî qezenc kiribû. Di encamê de diyar bû ku wê li Tirkiyeyê piştî 13 salan, ji nû ve desthilatiyên koalîsyonî pêk bên.

Encameke din û belkî encama herî grîng a vê hilbijartinê jî ew e ku HDP’ê, li gel ku di derbarê derbaskirina benda ji sedî 10’ande, di nav peroşiyeke ne diyar de bû jî, ji sedî 13 dengan wergirt. Her çend di pêvajoya meşandina kampanyaya hilbijartinê de rastî rexne, hewlên reşkirinê yên rayedarên hikûmetê hatibe û herî dawî di mîtinga wê ya Amedê de êrîşeke bombeyî ku bû sedema mirina du kesan û birîndarkirina bi sedan kesan jî HDP’ê tenê bendê derbas nekir, her wiha rêjeya rayên xwe 3 pile ji bendê bilindtir kir û li gor encamên ne fermî 80 kursiyên parlameniyê bi dest xist. Weke tê zanîn di hilbijartina 2011’an de HDP bi namzetên serbixwe beşdarê hilbijartinan bûbû û tenê 35 kursî bi dest xistibû. Lê belê di vê hilbijartinê de li bajarên Bakurê Kurdistanê bi pileyeke bilind, serkeftineke mezin bi dest xist û di heman demê de rayên xwe yên metropol û bajarên din ên rojavayê Tirkiyeyê jî zêde kir. HDP’ê li Bursa, Antalya û Enqereyê jî kursiyan bi dest xist û ev bidestxistina kursiyên van bajaran serkeftineke nû ya HDP’ê ye.

HDP’ya ku bi pêşengiya tevgera siyasî ya kurd û bi piştgiriya aliyên çep û alternatîf ên Tirkiyeyê û tevgerên îslamî û neteweyî yên Kurdistanê serkeftineke mezin bi dest xist, hem di mijara çareseriya pirsgirêka kurd û hem jî di di senaryoyên koalîsyonê de roleke kilîlk hilgirt ser xwe. Ev encamên ku derketin holê, di dîroka siyasî ya Tirkiyeyê de rewşeke nû û balkêş e. HDP’ê bi vê serkeftinê, her wiha li Bakurê Kurdistanê AKP’ê kir partiyeke tabelayî. Weke tê zanîn di hilbijartinên 2002’yan de dengên Bakurê Kurdistanê di nav HDP’ê û AKP’ê de hatibûn parvekirin û partiyên din têk çûbûn. Lê belê di vê hilbijartinê de HDP’ê li 15 bajarên Kurdistanê bi pileyeke mezin bû partiya yekemîn û derbeke mezin li AKP’ê xist. HDP’ê li Amed, Wan, Şernex,




Batman, Mêrdîn, Bedlîs, Agirî û Dêrsimê rayên xwe derxist seriya ji sedî 70’yan. Her wiha li Semsûr, Erdexan, İzmir, Bursa, Enqere, Edene, Dîlokê jî kursiyan bi dest xist.

## Serkeftina HDP’ê ji bo Kurdistanê tê çi wateyê?

HDP’ê beriya hilbijartinên 7’ê Hezîranê bi gellek alî û fraksiyonên cihê re hevkarî kir û bi şiyara ‘Tirkiyeyîbûnê’ gellek astengiyan li dû xwe hişt. Lê belê piştî hilbijartinan pirsa ku wê herî zêde HDP’yiyan mijûl bike pirsa ‘Piştî vê pêvajoyê wê HDP li gel cihêrengiya navxwe, wê siyaseteke çawa bimeşîne?’ ye. Lewre nerazîbûna helwesta ‘Tirkiyeyîbûnê’ ya di nav kurdên ku rayên xwe dane HDP’ê de, di nav HDP’ê de hebûna fraksiyonên ku rîwangeyên wan ên bîrdozî û siyasî ji hev cuda ne, meyldariyên ku serxwebûna Kurdistanê dixwazin û geşedanên herêmî û navneteweyî yên di derbarê kurdan de diyar dikin ku gellek mijarên mezin û grîng ku divê HDP wan çareser bike hene.

## Têkçûna Tayyip Erdoğan!

AKP’ê bi pêşengiya Recep Tayyip Erdoğan, di sala 2002’yan de bi rêjeya ji sedî 35’an li Tirkiyeyê bû partiya desthilat û piştî vê hilbijartinê bû yekem partiya ku di sê hilbijartinan de bi serê xwe dibe desthilatdar. Piştî ku Erdoğan bû serokkomar ragihand ku ‘Bila tu kes hêvî neke ku ez ê li mala xwe rûnim’ û wek serokê partiyeke siyasî di mîtingan de propagandaya AKP’ê kir. Erdoğan bi vî awayî hewl dida ku AKP careke din bi rêjeyeke ku bi serê xwe bibe desthilat da ku rê li ber pergala serokatiyê ya ku wî dixwest veke. Di axaftinên xwe yên li meydanan de bi taybetî dest bi reşkirina HDP’ê û Demîrtaş kir. Li meydanan Qur’anê wek alaveke siyasî bikar anî û xwest ku HDP’ê bi zerdeştî û bêoliyê reş bike. Lê belê ev bizavên Erdoğan ji alî hin alîgirên AKP’ê ve jî hate rexnekirin. Ji ber ku li gel HDP’ê, CHP’ê û MHP’ê jî bi dijîtiya pergala serokatiyê kampanya meşandin û di encama hilbijartinan de mîsoger bû ku wê pergala serokatiyê pêk neyê. Ji ber ku AKP’ê hem rêjeya ku wê dikaribe destûrê bi serê xwe biguherîne bi dest nexist û hem jî ya ku wê bi serê xwe bibe desthilat bi dest nexist, nirxandinên ku ‘Tayyip Erdoğan ber bi têkçûnê ve diçe’ hatin kirin. Li gel ku rayedarên AKP’ê bi hemû şiyana xwe ya ku bi derfetên dewletê têne pêkanîn, hewl dan ku HDP bendê derbas neke jî HDP’ê serkeftineke mezin bi dest xist û derbeke mezin li planên Tayyip Erdoğan xist.

## Ji niha pê ve wê çi bibe?

Piştî van encamên hilbijartinê yên ku derket holê ku tu partî nikare bi serê xwe hikûmetê pêk bîne, di çapemeniyê de nîqaşên li ser egeriyên koalîsyonê jî destpê kirin. Ger ku partî li gor helwestên ku di pêvajoya kampanyayên hilbijartinê de hanîn ziman paş de gav nehavêjin, hilbijartineke nêzîkdem egeriya herî rast xuya dike. Lewre HDP û CHP yan jî CHP û MHP li hev bikin jî kursiyên wan têra pêkanîna hikûmetê nake û pêdivî bi partiyeke din jî heye. Tê payîn ku wê HDP bi MHP’ê re tifaqê neke û ne pêkan e ku HDP bi AKP’ê re jî tifaqê bike. Her wiha tifaqa AKP’ê û CHP’ê jî dûrî egeriyan e û rêbaza herî pêkan ew e ku APK û MHP bi hev re tifaqekê bikin û himûmetê damezirînin. Ev nediyariya siyasî egera hilbijartina nêzîkdem xurtir dike. Lê belê di nirxandinan de ev yek jî tê gotin ku siyaset di xwe de gellek surprîzan jî dihewîne û dibe ku tifaqên surprîz jî pêk bên. Ev encam her wiha diyar dike ku wê pêvajoya çareseriyê jî heta demekê wiha tevizandî bimîne, lewre ger ku hikûmeteke koalîsyonî pêk bê jî pêvajoya çareseriyê dikare koalîsyonê têk bibe.

## Serkeftina HDP’ê bi xwe re çi anî

Bi vê serkeftina HDP’ê re di qada siyasî ya Tirkiye'yê de gellek guherînên grîng pêk hatin. Her wiha gellek mijarên ku li pêşiya HDP’ê ne û divê bêne çareserkirin jî derketin holê. Ji ber helwesta HDP’ê ya ku ji gellek pêkhateyên civakî yên Kurdistan û Tirkiyeyê namzed nîşanda, bi xwe re dîmenekî nû û pirreng peyda kir. Her wiha bi hilbijartina xwarziya Serokê PKK’ê Abdula Ocalan Dîlek Ocalan a parlamentiyê re tabûya ku li ser paşnavê Ocalan bû jî hate şikandin.



## Mesrûr Barzanî

# Referandûm mafê kurdan e

Li Herêma Kurdistanê ku li eniyan pevçûn êdî gihiştine asta bi dawîbûnê vê carê di rojevê de meseleya têkiliyên Hewlêr û Bexdayê ku butçeya herêmê demeke dirêj e nayê şandin di rojevê de dîsa cihê xwe girt. Têkiliyên ku çendîn caran bi saya rayedarhen Kurdistanê bûn qada hewildanan ji ber israra Bexda‘yê ya nedana butçeyê dîsa di nava qrîzê de ye. Li ser vê yekê, ji Rawêjkarê Ewlehiya Kurdistanê Mesrûr Barzanî daxuyaniyên girîng hatin. Di hevpeyvîna xwe ya li gel televîzyona emanî ZDF de Mesrûr Barzanî got ku serxwebûna Kurdistanê ne xewn e, daxwaza serxwebûnê asayîtirîn mafê kurdan e û rêbaza herî baş a hînbûna vê daxwazê jî referandûm e.

## Pêdiviya peşmergeyan bi çekên giran re heye

Rawêjkarê Giştî yê Ajansa Ewlehiyê ya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî, di hevpeyvîna xwe de da zanîn ku mafê gelê kurd jî wekî gelên din heye ku çarenûsa xwe bixwe diyar bike û rêbaza herî baş a hînbûna hebûn an tunebûna vê daxwazê jî referandûm e. Barzanî anî zimên ku serxwebûna Kurdistanê xeyal nîne, ev mafê herî asayî a gelê kurd e û mafê kesî nîne ku li dijî vê daxwazê derkeve. Her wiha Barzanî anî bi lêv kir ku ji bo famkirin û bicihanîna vê daxwazê jî çi xebat pêwîst be ewê bikin.

Barzanî bal kişand ku di têkoşîna li dijî DAÎŞ'ê de çek û alikariyên mirovî ên Elmanyayê bibandor bûne û ji ber vê yekê sipasiya xwe ji Elmanya'yê re pêşkêş kir. Barzanî wisa domand: “Bêguman, dewletên din û bi taybetî Elmanya'yê, alikariyên mezin kirin û ev alîkarî li serkeftinên Pêşmergeyan ên li dijî DAÎŞ'ê gelek bibandor bûn. Lê belê, çekên ku artêşa Iraqê li Mûsil û herêmên din, ji DAIŞ'ê re berdabûn, çekên pir giran û baş bûn. Li hemberî çekên evqas baş, pêdiviya Pêşmergeyan jî bi çekên giran heye." Herwiha di derbarê beşdarbûna Pêşmergeyan a bo operasyona Kerkûkê jî Barzanî anî zimên ku derxistina DAİŞ'ê ji Mûsilê gelekî girînge û ev yek bo berjewendiya Kurdistanê jî elzem e. Barzanî wisa domand: “Lê, bêşdarbûna Pêşmergeyan li vê operasyonê bes bi biryara Parlamentoya Kurdistanê pêkan e.” Barzanî anî zimên ku performansa Pêşmergeyan derxist holê ku têkçûna leşkerî a DAİŞ'ê gengaz e, bi hêzeke leşkerî a birêkûpêk, bi stratejiyên rast û bi tunekirina çavkaniyên aborî ên DAİŞ'ê ev yek dikare pêk were. Barzanî anî zimên ku dibe ku hebûna îdeolojîk a DAİŞ'ê bi salan berdewam bike û bo vê jî pêdivî bi piştevaniyeke berfirehtir û gur heye.

## Em nikarin ji helwesta Bexda'yê re bêdeng bimînin

Li aliyekî din li ser neşandina para butçeya Herêma Kurdistanê, Serokwezîrê Hikumeta Herêmî ya Kurdistanê Neçîrvan Barzanî jî diyarkir ku, hetera Baxdayê a li ser neşandina para butçeya Kurdistanê neheqiyeke mezin e û ew nikarin ji vê re bêdeng bimînin. Barzanî got ku niyeta Kurdistanê tune ku li Iraqê aloziyên navxweyî derxe û da zanîn ku çareserkirina pirsgirêkên Kurdistanê bi Bexdayê re , ji bo çareserkirina tengasiyên aborî ên Kurdistanê pir girîng e. Lê heke sazkirina aborî neye kirin û helwesta wan a di warê butçeyê de bi vî awayî berdewan bike ew jî rêbazeke din biceribînin. Her wiha Barzanî wiha domkir; “Digel van tiştan em dixwazin bi axaftina bi hevûdû re vê pirsgirêkê çareser bikin û ji bo vî tiştî jî çi pêwîst be em dikin.”

## Di 40'emîn salvegera damezirandina YNK'ê de ji Barzanî pîrozbahî

Bi hilkefta 40'emîn salvegera damezirandina YNK'ê Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî bo pîrozkirinê peyamek ragihand. Di salvegera 40emîn ku laqayî serdemeke wisa hat ku kurd şerekî mezin dimeşînin de Barzanî wiha got, “Ez hêvî dikim ku ev ezmûmeya dîrokî ku li dijî neyarên ku dixwestin kurdan bikin çar perçe, bibe alîkariya yekîtiya siyasî û netewî ya kurdan.” Her wiha Barzanî diyar kir ku dîroka têkoşîna rizgariya gelê kurd bi me nîşan dide ku çi çaxê kurd yêkîtiya xwe pêk anîne wê çaxê bûne xwedî destkeftiyan û bi rênîşandana 'şehîdên qehreman û vîyana qewî' ya Pêşmergeyan pêşiyên 'terora' ku li herêmê rû da hatiye girtin û her wiha kurdan bi saya vê di qada navnetewî de rêzgirtina ku heq dikirin ebi dest xistin. Barzanî wiha domkir, "Vê yekê ji me re derfeta bidestxistina mafê diyarkirina çarenûsa xwe da. Yêkîtiya Niştimanî ya Kurdistanê (YNK) di têkoşîna rizgariya netewa kurd de berdêlên mezin dan û di her warî de rolên mezin lîstin. Piştî van ezmûneyên têkoşînê gelê kurd ji hemû partî û derûdorên siyasî daxwaz dike ku bo bihêzkirina yekîtiya netewa kurd, hewldanên xwe zêdetir bikin. Bi vê daxwazê ji Mam Celal Talabanî re şîfa û ji YNKê re jî serkeftinê dixwazim." Her wiha serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, bo rewşenbîr û nivîskarê kurd Ahmedê Qazî ku jiyana xwe ji dest dabû jî peyamek ragihand. Barzanî di peyama xwe de got ku; “Emê Ehmedê Qazî ku bi salan ji ziman û wêjeya kurdî xizmet kir, bi nivîskar û helbestvanên mezin wekî Hêjar, Hêmin re mil bi mil xebatên mezin kir, jibîr nekin û tim wî birêzî bi bîr bînin."





## Rewşa eniyan

Li eniyên şer ku pêvçûn şer bi awayekî berbiçav bi dawî bûne rewş her ku diçe dizivire aramiyê. Herwiha hat zanîn ku li derûdora Mûsilê, di operasyona hevpar a Pêşmerge û hêzên hevpeymaniya navneteweyî de bi dehan DAİŞ'î hatin kuştin. Di daxuyaniya nivîskî ya ku ji hêla Fermandariya Zêrevanî ve hat dayîn de hat ragihandin ku li derûdora Mûsilê li rojavayê çemê Dîcleyê li qada çiyayê Badoşê, di operasyona hevpar a ku Pêşmerge jî li bejiyê piştgiriyê dide de, bi dehan DAİŞ'î hatin kuştin. Di daxuyaniyê de hat diyarkirin ku hejmara miriyan ne diyar e û di rewşên xetere de operasyonên hevpar ên bi vî rengî dê berdewam bikin.

## Li Teleferê 18 DAÎŞ'î hatin kuştin

Li gor daneyên ku daxuyaniyê de hatin eşkerekirin di êrîşa hewayî ku ji aliyê hêzên hewayî ên hevpeymana navneteweyî ve li Telafera navçeya Mûsilê, li hemberî hêzên DAİŞ'ê hat kirin de, 18 DA’ÎŞî hatin kuştin. Di derbarê êrîşên hewayî de Nayîf Herkiyê Fermandarê Eniya Rojavayê Dicleyî ê Pêşmergeyan pirsên BasNûçe'yê bersivand û got ku; ev operasyon li gundên Babê Xerîbiyê û Seraîda derûdora Navçeya Keskêyê pêk hat û di encama operasyonê de 18 endamên DAİŞ'ê hatin kuştin. Her wiha Nayîf Herkî peyitand ku gelek amûrên wan jî hatine tunekirin.

## Amedehiya Heşdî Sadî bo bidestxistina Ramadi'yê didome

Bo amedehiya bedestxistina Ramandi ya ku meha çûyî piştî êrîşên bi amûrên bombeyî ên DAİŞ'ê û paşvekirandina artêşa Iraqê ketibû destê DAİŞ'ê, Heşdî Şabî ket navê. Ji Heşdî Şabi Fermandarekî Bedirê diyar kir ku amadehiyên bidesxistina Ramadî ya di destê DAİŞ'ê de ketiye qonaxên dawîn û Hadî Amîrîyê berpirsiyarê hêzên mîlîs bo rizgazkirina Ramadiyê hemû amadehiyên xwe kirine û di wexteke guncav de ewê operasyonê pêk bînin. Ramadiya ku navenda rêvebirî ya wilayeta Enbarê ye berê jî ketibû destê DAİŞ'ê û piştre jî di dawiya meha çûyî de ji ber êrîşên tund ên DAİŞ'ê û paşvekişandina artêşa Iraqê careke din ketibû destê DAİŞ'ê.

# Kembera ereb diqete



Barış Dokçu

Pengava YPG'ê ya ji bo ku Kobanê û Cezîre bigihîjin ya ku di heman demê de tê wateya şikandina kemberên ereb yên ku rejîma Baasê di salên 60'an de yek jê di navbera Efrîn û Kobanê û yek jê jî di navbera Kobanê û Cizîrê de pêk anîbû û van kemberan ji kurdan xalî kiribû û ereban tê de bi cih kiribû dom dike. Jêderên herêmê radigihînin ku hêzên YPG'ê ji her dû aliyan ve jî pir nêzîkî Girê Sipî(Tel Ebyad) bûne û ereb ji Girê Sipî ber bi Tirkiye'yê ve koç dikin.

## Grê spî vala dibe

Piştî ku YPG'ê hem ji aliyê Kobanê û hem ji aliyê Cizîrê ve dest bi hewldana gihandina hev a van kantonan kir, jêderên herêmê radigihînin ku her ku hêzên YPG'ê yên her dû aliyan nêzîkî hev dibin, hejmara şêniyên Girê Spî (Tel-Ebyad ) yên ku ji bajar koç dikin zêdetir dibin. Li gor agahiyên ji Girê Spî tên, ji ber şerê ku li herêma Grê Spî derketiye, heta niha 5 hezar kes ji warên xwe reviyane ser sînorê Bakurê Kurdistanê ango Tirkiyeyê. Jêder radigihînin ku şêniyên ku ji Grê Spî reviyane li ser sînorê Tirkiyeyê kom bûne, lê Tirkiye nahêle ku ew ji sînor derbaz bibin. Rayedarên tirk jî radigihînin ku heta niha 400 kes derbasî Tirkiyeyê bûne. Ji 30'ê Gulanê ve li gel hêzên Volkana Feradê, hêzên YPG'ê, li herêma Grê Spî, li dijî DAIŞ'ê operasyoneke mezin dane destpêkirin. Di vê operasyona ku frokeyên hêzên hevpeyman jî piştgirî didinê de DAIŞ qelstir dibe û ji ber şer û pevçûnên dijwar şêniyên Grê Spî ku piraniya wan kurdin bajar terikandine û li ser sînorê Tirkiyeyê kom bûne. Di derbarê van şêniyên li ser sînor kom bûne ku tê gotin hejmara wan nêzîkî 5 hezaran e, Waliyê Ruhayê İzettin Küçük got ku 400 kes ji wan derbasê Tirkiyeyê bûne. Tê payîn ku piştî şer bigihîje Grê Spî, wê hezmara koçberan pir zêdetir bibe.

## Rewşa Hesekê jî xeter e

Rêveberê PYD'ê Husê Birê, ji Hesekê ji BasNûçe'yê re ragihand ku li Hesekê, 6-7 kîlometir dûrê herêma kurdan, di çend rojên dawî de, di navbera hêzên rejîmê û hêzên DAIŞ'de şer û pewçûnên giran diqewimin, lê belê herêmên ku kurd lê dijîn aramtir in. Birê got: "Lê belê ev nayê wê wateyê ku, li ser herêmên kurd xeteriya şer tune ye" Husê Birê da zanîn ku çend roj beriya vî şerî, DAIŞ'ê bi çen êrîşên hewanî hewl daye ku ber bi Hesekê ve were, lê YPG'ê bi tûndî bersiv daye van êrîşan û êrîşan daye rawestandin. Piştî ku asayîşa Kurdan ew êrîş bi avayekî tund bersivandin, hewla DAIŞ'ê ya ku li ser Hesekê sekiniye. Birê diyar kir ku piştî rawestandina van êrîşên DAIŞ'ê, vê carê di navbera hêzên rejîmê û DAIŞ'ê de şerekî mezin destpê kirî ye. Husê Birê da zanîn ku gelê Hesekê ji şer re amade ye û moralê gel jî pir bilind e. Birê wiha dom kir: "Em bi gelê xwe û bi şervanên xwe amade ne. Ger ku êrîş bên bi ser me ve em ê bi hemû hêza xwe bibersivînin û xwe biparêzin. Ji alî cebilxane ve kêmasiyên me tune ne û asayîşa me 24 saet amade ye. Ji ber bilindbûna nirxê dolar, tenê di warê zexîre û xwarinê de hin pirsgirêkên me hene. Ev yek carcaran dibe sedema hin şêniyên vê herêmê ku ber bi bakur ve koç bikin. Lê bi gelemperî gel ji halê xwe razî ye"
Husê Birê di dawiya axaftina **xwe** de hanî ziman ku metirsiya heyî ne tenê li ser Hesekê, li ser hemû Kurdistanê ye û bang li hemû kurdan kir ku hêzên xwe bikin yek û li dijî van hêzên tarî bi hev re têbikoşin. Birê got: "Li Hesekê em dikarin bersiva dijmin bidinê, lê belê ger ku yekîtî pêk bê, wê barê gelê me siviktir bibe û em ê serkeftîtirbin. Ji bilî serkeftinê, di rojeva me de tu tişt tune ye"

## Efrîn dorpêçkirî ye

Di derbarê rewşa Efrînê de jî Hevseroka Kantonê Hêvî Mistefa ji BasNuçe'yê re ragihand ku, Efrîn ji her alî ve di ambargoyek dijwar de ye. Mistefa da zanîn ku piştî Tirkiyeyê deriyê sînor girtî ye û dûre piştî dora Efrînê ji alî komên tûndrew ve hatiye girtin çûnûhata ji Efrînê ji bo cihekî din pir zehmet bûye. Mistefa got: "Hem dewleta Tirk û hem jî Artêşa Azad dixwazin bi dorpêçkirinê Efrînê lawaz bixin da ku pergala me ya xweserî têk biçe. Lê belê derfetdariya axa Efrînê ya ji bo çandiniyê û derfetên din ên Efrînê pêdiviyên debara Efrînê dibersivînin. Em dikarin debara xwe bikin û gelê me di vê mijarê de pir hestiyar e û dikare ambargoyê bişikêne" Di derbarê rewşa şer de jî Hêvî Mistefa biryardariya gelê Efrînê destnîşan kir û wiha dom kir: "Gelê me bi giştî ji bo şer tê perwerdekirin. Gelê Efrînê jiyana xwe li ser vê rastiyê saz dike. Heke şerek biqewime tevahiya gelê me di bin banê YPG û YPJ'ê de amade ye ku têbikoşe û moralê gel pir bilind e. Lê belê dîsa jî em ji hemû dinyayê re radigihînin ku em li dijî terorê ne. Bila alîkariya me bikin da ku ev teror têk biçe"

## Ezaz bikeve Efrîn dibe Kobanêya duyem

Hêvî Mistefa da zanîn ku, DAIŞ'ê çend roj berê êrîşî navçeya Sewran a 40 kîlometir dûrî Helebê ye kiriye û vê navçeyê xistiye bin kontrola xwe, eger piştî Sewranê navçeya Mera'yê jî bi dest bixe, wê têkiliya Heleb û bakûrê Helebê bê birîn û got: "Ger ev yek pêk bê wê metirsiya li ser Efrînê zêde bibe. Piştî ku DAIŞ'ê navçeya Sewranê bi dest xist, daxuyaniyek belav kir û ragihand ku ji îro pê ve armanca wan ew e ku Ezaz û Efrînê dagir bikin. Ger ku DAIŞ vê armanca xwe pêk bîne, wê pêleke pir mezin a koçkirinê ya ber bi Bakûr ve destpêbike. Lê em ê nehêlin ku gelê me ji ber şer û pewçûnan bibe penaber û ji axa xwe dûr bikeve. Me di vî warî de soz daye gelê xwe û em ê soza xwe bi cih bînin"

## Bi ser BasNûçeyê bang: Kongreya neteweyî dikare êrîşan bişkêne

Hêvî Mistefa di dawiya axaftina xwe de, bi ser BasNuçe'yê bang li gelê kurd kir û got: "Heke em karibin kongreya neteweyî pêk bînin, wê gavê em ê dikaribin êrîşên li ser her çar parçeyên Kurdistanê rawestînin û metirsiyên li ser axa welat kêm bikin. Kurd bi tevahî di pêvajoyeke dîrokî û hestiyar de derbaz dibin. Divê em yekîtiya xwe pêk bînin û destkeftiyên xwe biparêzin."

Li gor jêderên ji herêmê, çekdarên DAIŞ'ê duh bajarokê Soran û 2 gundên li kêleka wê yên girêdayî bajarê Ezazê ku di destê eniya Îslamî de bûh bi dest xistiye. Piştî vê yekê, çekdarên DAIŞê dikarin berê xwe bidin deriyê sînor ê Bab El Selamê. Jêder diyar dikin ku egerî heye ku DAIŞ, di çend rojên pêş de, berê xwe bide Ezazê ku 10 km li bakurê rojhilatê bajarokê Soran dikeve.

## YPG'ê bîlançoya meha Gulanê ragihand

Li aliyê din ve Navenda Ragihandinê ya YPG'ê bîlançoya şer a meha Gulanê aşkere kir. Li gor vê bîlançoyê di encama 73 operasyonên ku 29 caran pevçûn derketine de 1005 çekdarên DAIŞ'ê hatine kuştin û cenazeyê 353 ji wan tevî hejmareke zêde çek û cebilxaneyan ketine destê hêzên wan. Li dijî YPG/YPJ'ê 24 êrîşên xwekujî û yên bi maşînên bombebarkirî pêk hatine. Di encama van pevçûnên ku 2 endamên DAIŞ'ê sax hatine desteserkirin de 86 şervanên YPG/YPJ'ê jiyana xwe ji dest dane.



Rojhilat – Rojava

# Du senaryoyên berûvajî

**Di heftiyên berê de hin bûyerên nexweş li Çiyayê Kêleşînê qewimîn ku tê de ziyanên canî jî derketin. Ev bûyer bêtirî her derên Rojhilatê Kurdistanê deng da û heta hin pêlên civakî jî li dû xwe hiştine. Ew tiştên qewimîn hin pirsiyar li pey xwe hiştin ka gelo kîjan hêz temsîla îradeya Rojhilatê kurdistanê dike? Yanî pirs pirsa serweriya Rojhilatê Kurdistanê ye ka kîjan hêz dikare wiya binmîne?**

Mamend Roje

Ev 20 salin tevgera rizgariya Rojhilatê Kurdistanê li Başûr di doxa kampnişîniyê de ne û xebatên xweyên serbazî, siyasî û sivîl jî hema bêje rawestandine. Behaneya vê paş ve kişandinê jî li ber çavan girtina rewşa jeopolîtîk a Başûrê Kurdistanê bû. Lê di naverokê da mirov dikare bêje tevgera Rojhilat piştî derbeyên ku ji alî Îran û hevalbendên wê pê ketin, piştî ku serokên vê bizavê yek bi yek ji aliyê tîmên trora Îranî ve hatin qetilkirin, piştî hêzên xwe ber bi kuraniya xaka başûrê welêt paş de kişandin, êdî payeyên xwedî hêz gav bi gav ji dest dan.

## Kîjan senaryo: Başûr an Bakur

Niha hin derûdorên siyasî dixwazin formulek an jî reçeteyeke ji bo Rojhilat bikşînin. Ew dibêjin dê heman senaryoyê Rojavayê Kurdistanê li Rojhilat jî dubare bibe. Sebebên ku van kesan nîşan didin ew in ku ew hêza ku îro li Rojava serdest bûye, berî çend salan li Rojhilat jî çeşnek ji hegemonî çêkiriye û hêzek û alternatîfeke siyasî – serbazî damezrandiye û dê ev alternatîv şûna hêzên kilasîk bigre. Dema bipirsî gelo li gor kîjan argumentan ev têz rastiya xwe diselimîne (îspat dike), ew yekser rewşa Rojavayê Kurdistanê nîşan didin Niha bi rastî heq e mirov bipirse ka gelo wisa ye? Rojava qet mîrata xwedî çekdarî nebûye, ti carî xwedî sembolên xwe yên taybet nebûye, ti statûyek xwe ya awarte çênekiriye û berdewam di dîroka xwe de an piştgirî daye Bakûr (dema xweyîbûn – dema PKK) an jî piştgirî daye Başûr (dema şoreşa Îlon û şoreşa nû a YNK). Li Rojava sembolên mihelî li ast sembolên Kurdistanî berxwenedane. Mînak Öcalan sembolê gelek kurdên Rojava ye. Her wihaa li Rojava rêbazek Rojavasenterîzm di holê da nebûye û pirî caran bûye piştevan ji bo Bakûr an Başûr. Mîrata serbaziya Rojava jî ne li dijî Şamê, belê li dijî Bexda an Enqere'yê hatiye xebitandin. Niha dema em vê rewşê bi Rojhilat re didin ber hev, encamên berûvajî derdikevin. Çawan? Rojhilat parçeyek sereke ya Kurdistanê ye û qet nebûye temamkar an paşkoyê parçeyekî din. Her tim doza xwe hebûye, lê carina xurt û carina jî lawaz bûye. Xwedî opozîsiyoneke xweyî siyasî û serbaziyê taybet bûye û mîrata xweyî serbazî û pêşmergane heta niha parastiye. Sembolên xwe hene û ti caran sembol deyn nekirine (Pêşewa Qazî, Dr. Qasimlû, Dr. Şerefkendî û Fuad Mistefa Sultanî). Yanî Rojhilat bixwe hêza xwe û opozîsiyona xwey a resen heye.

Di tevgera 35 salên dawîn de, li rojhilat PDKÎ û Komele zêdetirî 10 hezar şehîdên dane. Di wê cengê de zêdetirî 50 hezar hemwelatiyên kurd jiyana xwe ji dest dane, 100 hezar Pasdarên îranî hatine kuştin, 14 hezar hemwelatî ji ber wê tevgerê hatine girtin û rû bi rûyî hukmên giran bûne, nêzî 20 hezar kes bûne Pêşmerge, hin ji wan derketine derveyî welêt, hin vegeryane Rojhilat û hin jî hêşta berdewam in. Niha pirsyar ev e gelo ev mîrate, ev potansiyel miriye an razaye? Li gor pisporên siyasî ev mîrat razaye û dereng an zû dê bi kirîzan re biteqe. Ji ber vê pispor dibêjin eger senaryoyek li Rojhilat dubare bibe, dê mîna Başûr be, ne mîna Rojava.

**Rojhilat:**

## Başûrsenterîzm – Bakursenterîzm

Îro tevgera siyasî ya Rojhilat bi du diyardeyan re rûbirû maye. Ev du diyarde (feneomen) jî yekem "Başûrsenterîzm"e, duyem jî "Bakursenterîzm"e. Çawan? Ev 20 sal in tevgera siyasî ya Rojhilat li Başûr di rewşa paş ve kişandinê de ye. Di kampên Başûr de bi cîh bûne û hemenhemen ti çalakiyên xwe yên berçav tinene. Dema tu bipirsî ka gelo çima wisa ye? Dê rûbirûyî wê bersivê bibî: ji bo parastina deskeftiyên Herêma Kurdistanê me xebatên xwe rawestandine. Dibe ku hin kes bi vî hecetê îqna bibin, lê tevgera parçeyekî nabe ticarî bibe qurban ji bo çarenivîsa parçeyên din. Rast e û heq e ku kurd li her parçeyî piştgiriyê bidin xebata parçeyên din, lê pispor di wê baweriyê de ne ku çênabe bi carek çarenivîsa parçeyekî ji bo berjewendiya parçeyên din bibe gorî. Ji ber vê ev têz ku têza hin ji serkirdeyên partiyên Rojhilatî ye, kişfe û bi têza Başûrsenterîzmê tê nasîn. Ango başûr navende neku Rojhilat.

Di wan 15 salên dawîn de jî, piştî ku tevgera rizgarî li Bakur pêş ket, hin ji ciwan û nifşên nû berê xwe dane refên li wê derê. Têza heyî jî berê ew bû bila li Bakur dewletek çêbibe, bi rengê otomatîkî wê bandora xwe li ser Rojhilat jî bike. Piştî tevgera Bakur stratejiyên xwe guhertin, niha ev têz jî rû bi rûyî pirsyaran bûye. Ev têz heya niha jî ji potansiyela Rojhilat berxwer (mersref) dike. Loma pispor jê re dibêjin "Bakursenterîzm". Ango bakur girngtir ji Rojhilate.

Îro cardin lêgerîneke destpêkiriye. Ev lêgerîn jî vegera ser xwe û ji bo xwe ye. Nifşa nû li bersiva wê pirsyarê digere ka gelo dema wê yekê nehatiye cardin têza "Rojhilatsenterîzm" şûna têzên din bigre?



# Înîsiyatîfê hawirdorparêzîyê lazim o



Texmînê mi gore, her roje bi seyan turîstê xerîb û cayî şinê Gêl zîyaret kenê, ê doran ra geyrenê. La wina aseno ke faydeyê nê turîstan ne Gêlî rê ne zî gêlijan rê beno.

Gêlî rê yew însîyatîfê hawirdorparêzîye yo sivîl (çevreci sivil bir insiyatif) acîlen lazim o. Verê verkan ganî zanaye û roşinvîrê Gêlî dest bi xebate bikerê, helbet do heskerdoxê Gêlî zî roj bi roje bizêdîyê û paştgirîya înan bikerê.

**Roşan Lezgîn**

Mîyanê qezayanê Dîyarbekirî ra qezaya tewr tarîxî û balkêşe Gêl o. Gêl şaristanêko zaf kan o. Hîna zaf sey warê pêxamberan namdar o. Mezelê pêxamberan ra yê Hz. Elyesa, Hz. Zulkîf, Nebî Harûn Asefî, Zennun (Yûnus), Dalyan û Nebî Alaqî Gêl de yê.

Goreyo ke kitaban de nuseno, vanê nameyê Gêlî eslê xo de "Engl", "Êngilene" yan zî "Inglawa" bîyo. Nika kurmancî ci ra vanê "Egilê", kirdê ucayî vanê "Gêl".

Gêl da-pancas kîlometreyî vakurê merkezê Dîyarbekirî de verê qolê Madenî yê Royê Dîcle de serê gazêka berze de awan bîyo. Zemanê Pîr Bedirî ra nat (serra 1030) hetanî demê ronayîşê Komara Tirkîya, yanî heşt sey serrî ra vêşêr merkezê mîreyanê kirdan bîyo. Coka şarê merkezê Gêlî kirdkî (dimilkî, zazakî) qisey keno.

Dewê Gêlî yê ke sey muxtarî hesibîyenê 24 heb ê. Nînan ra 9 dewî kirdkî (dimilkî, zazakî), 10 dewî kurmanckî (kirdaskî) û 5 dewî zî kirdkî û kirdaskî pîya qisey kenê.

Reya verêne ez serra 2003 de şîya Gêl. Yeno mi vîr, mi kitabê Nusret Aydinî Diyarbakır - Eğil Hükümdarları Tarihi wend, dima ez werişta şîya Gêl. Awbendê Dîcle 1997 de derûdorê Gêlî binê awe de xerq kerdbi coka mi şeklo verên yê Gêlî nêdî. Ez vana belkî dinya de yewna şaristano hende tarîxî, yew diza tebîî ya hende muhteşeme sey Diza Gêlî çin a. La çi heyf ke nika sere de Diza Gêlî heme eserê tarîxî yê Gêlî bêwayîr ê, qederê xo rê terk bîyê.

Derûdorê Royê Dîcle tarîx ra nat heme dar û daristan, bax û baxçe bîyo. Çîyo tewr xirab, awbendan kulturê derûdorê royî binê xo de xerq kerdo. Faydeyê awbendan şarê cayî rê tena dereceyê awdayîşê hêgayan rê beno la hîna zaf dewleta tirkan nê awbendan ra îstîfade kena; awbendan ra elektrîk hesilnena û roşena. Par wisarî zî ez reyke Gêl ra vîyarta şîya Pîran. La nê rojan (29.05.2015), ez û kek Nusret Aydin û yew merdimê ey (Nûrî Karakoç) ma pîya şîyî Gêl ra gêrayî. Nusret Aydin merdimêko entelektuel o, welatanê cîyacîyayan de xebitîyayo. Serranê 1980yan de çar serrî yew şîrketê rayîrê asinî ke rayîrê asinî yê Bexdad-Felluce-Ramadî-Akaşatî viraştêne de îdarekarîye kerda. 1985 ra nat zî Wezaretê Karê Teberî yê DYA de xebitîyayo. Bitaybetî kosolxaneyanê Amerîka yê Îstanbul, Qahîre, Moskowa û Vankuverî de demeyêko derg xebitîyayo. Nusret Aydinî derheqê tarîxê Gêlî û Dîyarbekirî de di kitabê muhîmî nuştê:

1-Diyarbakır - Eğil Hükümdarları Tarihi (Avesta, 2003)

2-Diyarbekır ve Mirdasiler Tarihi (Avesta, 2011)

Verê cû rayîrê qezaya Pîranî Erxenî ra vîyartêne la nika rayîrê mîyanê Gêl û Pîranî virazîyayo. Nîsbet bi rayîrê Erxenî, Gêlî ser ro Pîran da-hîris kîlometreyî Dîyarbekir ra nêzdî bîyo. Coka rayîrê Dîyarbekir-Gêl-Pîranî de nika trafîk zaf sixlet o. Seba ke na mintiqa de ocaxê mucirî û mermerî estê zî trafîk hîna zêde yo; kamyonê girdî şinê û yenê. La nê ocaxî tebîetê derûdorî xeripnenê, dîmen û asayîşê orîjînalî texrîb kenê.

Neke tena nê sedeman ra rayîrê Gêlî de trafîk sixlet o. Esas seba ke Gêl de gorê pêxamberan estê, her cayê vakurê Kurdistanî û Tirkîya ra zaf kesî her roje şinê meqberê enbîyayan zîyaret kenê. Yanî Gêl de turîzm û geştê bawermendîye (inanç turizmi) hema vajîn ke bi qasê mekanê Brahîm Xelîlî yê Ruha sixlet o. La rayîro ke seba cayê mezelanê embîyayan viraşto de gelêk mezelê kanê tarîxî kerdê qurbanê rayîrî, texrîb kerdê û bêwayîr verdayê. Hetta, goreyo ke kek Nusret vano, yew kumbete zî uca estbîya la a zî rijnaya. Kumbete bîya qurbanê rayîrî.

Êdî kamî aqil kerdo ez nêzana, la cêrê meqberê pêxamberan de tam bi zihnîyetêko oryantal cayê pîknîkî viraşto. Yanî milet eşkeno şiro hetê cêrê mezelanê pêxamberan de -sey tezadêkê zîyaretan- xo rê keyf û seyran zî bikero; biwero, bişimo!...

Binê Gêlî de, cayê Mehlaya Tekya yê zemanêk ke nika kewta binê awe, qeraxê awe de tesîs û restorantî viraştê. Na mehla de, mezelê Elyesa pêxamberî, yew medrese û yew zî tekya estbîya. Estikê Elyesa pêxamberî verî ke awe berz bibo, kiriştê berdê cayê mezelê Nebî Harûnî. La medresa û tekîye nika kewtê binê awe. Hem turîstê xerîbî hem zî şarê Diyarbekirî bi erebeyanê xo danê piro şinê Gêl, nê tesîsan de maseyan wenê. Verê nê tesîsan de qeyix û vapurî zî estê. Kesê ke biwazê serê awe ra Diza Gêlî û bitaybetî mezelanê qralan temaşe bikerê, wenişenê nê qeyix û vapuran, serê awa awbendî ra yew tûr erzenê.

Texmînê mi gore, her roje bi seyan turîstê xerîb û cayî şinê Gêl zîyaret kenê, ê doran ra geyrenê. La wina aseno ke faydeyê nê turîstan ne Gêlî rê ne zî gêlijan rê beno. Çunke kes Gêl de nêmaneno. Zîyaretkerdişê hemîne wina kilmek, îşê saetan o.

Ameyeyo ke xêr û xêratê mezelanê pêxamberan ra yeno zî binê kontrolê dezgeyanê resmîyan de yo. Yanî xêr û xêrato ke bawermendî sey sedeqe dekenê sindoqanê serê mezelê pêxemberan dekeweno qaseyê dezgeyanê dewlete.

Verî ke ma şirîn Gêl, serê rayîrê xo de ma şîyî dewa Şerbetin. Na dewe serê rayîrê karwanî ke zemananê verî de Dîyarbekir ra şîyêne vakur, yanî serê rayîrê hevrişmî de awan bîya. Na dewe de nika yew xane esta. Goreyê melumatê ke Nusret Aydinî dayî, cayo ke nika xane esta de eslê xo de yew kullîye estbîyo. Hema zî dêsê qalindî yê nê kullîyeyî asenê. Beno ke yew qela zî uca estbîya. La no kullîye ra tena na xane payanî ra menda. Dewijan kerrayê şanekerdeyî yê nê kullîyeyî kiriştê berdê pê dêsê dorê camî wina elel







usûl ronayê. Tayê merdiman zî nê kerrayî dekerdê mîyanê dêsê bananê xo.

Kek Nusretî va, cêrê xane de hemam estbîyo, zemanan ra awe ko ra sey selebî binê erdî ra kirişta arda dewe. Na awe hema zî esta, yew hênîyo hîrêlule ra sey hesirê çiman herikîyena. Karwan gama ke cor ra hetê Xarpêt û Meletî ra ameyêne, şarê karwanî û taciran xo nê hemamî de şutêne, tîya îstîrehet kerdêne hema şîyêne Dîyarbekir. Vanê çi raywan û karwanê ke uca ra vîyartêne, werdê xo kîseyê mîreyanê Gêlî ra werdêne.

Xana Şerbetinî ra nika tena yew qisim payanî ra mendo. Dewijan ser o ban viraşto, zereyê xane de zî bizan weye kenê. Yanî xana tarîxî bîya axurê bizan.

Hetê rojhelatê xane de, cêrê dewe de, serê yew gaze de di kumbetê tarîxî yê mîreyanê Gêlî estê. Nînan ra yewe şeşgoşe ya, yewe zî heştgoşe ya. Her çiqas nê serranê peyênan de dorê înan dês kerdo zî kumbetî zaf texrîb bîyê. Kek Nusretî va "Yeno mi vîr her di kumbetî zî zaf saxlemî bî. Gama ke dewe de mekteb viraşto, kerrayê nê kumbetan berdê pê dêsê mektebî ronayo."

Eke beledîye, komele û şexsîyetê zanayeyî yê Gêlî şêwrê xo bikerê yew û seba restorekerdişê nê kumbetan, ancî seba restorekerdişê na xane yew projeyê restorasyonî virazê, ez vana muheqeq do tayê çimeyanê fonan ra fînansman peyda bikerê. Çunke nika seba restorekerdişê eseranê tarîxîyan hem îmkanî zaf ê, hem personelê kalîfîyeyî ke bieşkê nê tewir eseran restore bikerê Dîyarbekir de zêdîyayê hem zî fehmê pawitişê eseranê tarîxîyan mîyanê şarê ma de êdî sey verî nîyo.

Projeyê restorasyonî seba Diza Gêlî zî lazim ê. Mesela, dîyarê Diza Gêlî ra çend nêrdewanî binê erdî ra şinê resenê verê royî. Beledîye, komeleyî yan zî zanayeyê Gêlî eşkenê seba akerdişê nê nêrdewananê binê erdî yew proje amade bikerê. Nê nêrdewanan pak bikerê, akerê û bikerê xizmetê zîyaretkerdoxan. Xususen zî seba restorekerdişê eseranê kanan yê sey Camîya Tacîyan ke hema zî dêsê aye payanî ra yo projeyî virazîyê, ancî banê kanî yê orîjînalî ke dorê Diza Gêlî de yê, bi ardimê fonan restore bibê, do Gêl û gêlijî pîya sîrkulasyonê turîstan ra fayde bivînê.

Seke mi cor ra zî va, nika turîzmêko zaf zêde Gêl de esto. Wina aseno ke do no turîzm tim dewam bikero û bizêdîyo. Her roje bi seyan kesî şinê Gêl zîyaret kenê. La halê hazir faydeyê nê turîstan ne Gêlî rê ne zî gêlijan rê beno. Hetta ke no sîrkulasyonê turîstan derûdormeyê Gêlî, bitaybetî Diza Gêlî texrîb keno. Eke zanaye û roşinvîrê Gêlî seba pawitişê eseran û tebîetê Gêlî yew hereket bidê destpêkerdiş zaf baş beno.

Xulasa nika Gêlî rê yew însîyatîfê hawirdorparêzîye yo sivîl (çevreci sivil bir insiyatif) acîlen lazim o. Verê verkan ganî zanaye û roşinvîrê Gêlî dest bi xebate bikerê, helbet do heskerdoxê Gêlî zî roj bi roje bizêdîyê û paştgirîya înan bikerê.

Eserê tarîxî ke welatê ma de yê, ma rê sey mîrasê heme însanîyetî emanet mendê. Îdarekaranê dewleta tirkan seba ke bi çimê kolonîyêk ewnîyenê welatê ma ra, eserê tarîxî ke Kurdistan de estê bêwayîr verdayî, hetta ke texrîb kerdî. La şarê ma zî qet qîymetê eseranê tarîxîyan nêzana. Ganî me heme wayîrîya welatê xo, eseran û erjanê welatê xo bikin.



# Tirkiya de ziwanê sîyasetî û şîddet

Ez yew lîse de gureyena (xebiyîyayena). Çend rojî ra aver îmtîhanê dersa mi bî. Sinifanê lîse de kênayê seregirewteyî estê. Nînan ra yewe bazîyê xo ra kopya nuşta. Ge-ge bazîyê kincê xo soynena we û bazîyê xo de nîyadana û reyna bazîyê xo gêna. No hal dîqatê malime (Heme sinifî yew rey de îmtîhan benê, coka her sinife de yew malim/e wezîfedar o/a.) anceno. Malime wazena ke qayt kero gelo bazîyê aye de çi esto ke nîya tey nîyadana. Kêneke nêverdana ke malime tey nîyado, zirçena vana "Heram o, ez bazîyê xo ranêkena." Malime israr kena û zemeqîna pira, kena ra ke bazî cer ra be cor nusîyaye yo. Malime vana "Kopya antene heram nîya, key ke ma dîye heram a ne!"

Na kêneke sey yew eyneyê halê îdarekerdoxanê Tirkîya ya. Sîstem cor ra be cer nîya xerepîyaye yo. Heta ke na rixe, na pixe kesî nêdîya, kesî nêheşna teba nêbeno. Nê mîyanê na rixe de gevîjdanê.

Ziwanê sîyasetmedaranê Tirkîya û wasitayê sîyasetî kî eynî sey meseleya corene zereyê merdimî fînê hure. Mesela, meydanan de dîn û înancê merdimî ser o qiseykerdene û dîn û înancê tayînê hakîr vînitene nê xetayan ra tewr pîla xo ya. Nê ke nîya tim dîn û îmanî ser o qisey kenê eke hemwelatîyê normalî bîyêne ancî hende zaf zerar nêdayêne. Hama nê ke nîya qisey kenê, tena înancê xo makul û makbul vînenê, tuyê ê bînan kenê, înancê ê bînan kenê binê erdî, temsîlkarê dewlete yê. Na dewleta ke heme hemwelatîyan ra bac gêna. Yew siyasetmedar bifikrê ke bivejîyo bivajo: "Nê wazenê ke ma tîya ra bîyarê war, nê bi no tore derbe kenê." Keso ke biaqil o zaneno ke xora meqsadê muhalefetî no yo. Muhalefet çinay rê muhalîf o? Belkî welat de çîyê rast nêşono, belkî ekonomî xirab bîyo, belkî azadîya fikran qesp bîya, belkî hemwelatîyan durumê xo ra razî nîyê... Madem demokrasî esto (!), karê muhalefetî seba averşîyayîşê ekonomî, seba refah û huzurê hemwelatîyan polîtîkayanê neweyan berardiş o. Nê polîtîkayê neweyî senî yenê re ziwan? Sîyasetmedarê muhalîfî vejîyenê meydan û polîtîkayanê xo danê naskerdene ke şar kî bizano nê çi fikriyenê, senê çareyan vînenê... Heqa îqdîdarî çin a ke vajero "Nê ma rê neheqîye kenê, wazenê ke ma bîyarê war." Yanê tîya de qesta îqdîdarî çik a? Ez vana qey wazenê ke kes vengê xo nêkero, hîna vîst-hîris serrî bimanê. Nameyê ney kî demokrasî yo ya? No demokrasî bibo bibo demokrasîyê tîpê tirkan o.



**Nadire Güntaş Aldatmaz**

Yew sîyasetmedar bifikrê ke bivejîyo her roj meydanan de bivajo: "Mi îmam-xetîb de wend. Domananê mi îmam-xetîb de wend. Keynayê mi seregirewte yê. Ez bi Quran-i Kerîm bîya pîle." Tabî ke tîya de meqset belî yo. Labelê seba ray merdimî ke nîya qisey kerd hem hemwelatîyanê xo keno herinda xêxan hem kî zerrîya hemwelatîyanê xoyê bînan şikneno. Nê kamî yê? Her kes kî zaneno ke Tirkîya de ê ke sey nê sîyasetmedarî nêciwîyenê kî estê. Sîyasetmedaranê bînan kî lîse wenda, unîversîteyan de huquq wendo, tip wendo, muhendîsîye wenda, malimîye wenda ... Çayê ê bînî qalê mektebanê xo nêkenê? Çike mektebê înan pere (ray) nêkeno. Madem meqset belî yo çinay rê şarê ma hîna nêvîneno.

Yew sîyasetmedar qisey keno, vano: "To key tuwaletê ma kerdo pak ke ti zanena senîn o." Nê qiseyan ra dahîna xirabinê xo "Ma zanenîmê ê cinîyan çayê pêye xo çarno la terbîyeyê ma musaît nîyo ke bivajîme." Kutik ke nê qiseyan pêhesîyo tukê xo rişneno. No senê terbîye yo? Na senê însanî ya? No senê demokrasî yo? No weçînitiş axrê qedîyeno. Tîya de di rojî mendî. Ez merax kena, di rojî ra tepîya nê senî qaytê rîyê yewbinî benê. Demek nînan her ke cinîke pey ra dîye tek yew çî yeno aqilê nînan. Îşte no zîhnîyeto seqet cinîyan pîşeno têra, her cayê cinîyan gêno ke kes mevîno. Çike bixo ke yew cinîye bivînê aqil sere ra şono. Êdî o aqil kata şono şima zanenê. Seke şima kî zanenê yew vateyo verên yê tirkan esto "Fikrê derweşî ke çik o, zikrê xo kî o yo."

Êdî nê xeberî û nê qiseyî zereyê merdimî kenê sîya. Senik mendo ke ma domananê xo rê seyrkerdena xeberanê sîyasî qedexe bikerîme. No vateyê sîyasetmedaran hem ar û edeb ra dûrî yo hem kî binê her çekuye de daweta şîdetî esta. Ma vajîme ancî taye sîyasetmedarî tayînê bînan ra "terorîst" vanê. Yan kî vanê "Rayo ke şima danê falan partî, şima rê beno qerşune peyser yeno. Nê wazenê ke welatê ma pare bikerê, ..." Îthamê nîyanenî tayîne fînê re raye ke şerê welatî înan dest ra bixelesnê. Xora kesê ke meylê xo bi şîdetî esto nê mesajan derhal gênê û der-ber vêşnenê, kişenê ...

Kara kamî rê bena? Kara nê ziwanî kesî rê çin a. No ziwan dişmenayînî keno mîyanê şarî. Na dişmenayînî kî zerar dana ma pêroyîne.

Key ke qalê demokrasî bî welatê Ewropa yenê re merdimî vîrî. Merdim biwazo-nêwazo şeklê sîyasetê înan ser o fikrîyeno û mesafeyê ke orteyê ma der ê, vîneno. Sîyasetmedarê Ewropa wînî kibar, winî rêzdar, winî medenî yê ke merdim şermayeno ke înan be nînan ra têvera bikero.

Vanê ke "Yew şar sey leyaqê xo yeno îdarekerdene." Yanî madem şar bi xo îdarekerdoxanê xo weçîneno, leyaqê xo weçîneno. Ez nêwazena ke vajî şarê ma hende yo. Ez wazena bawer bikerî ke şarê ma de qebehet çin o. Çi guneyo ke tena bawerîya mi bes nîya wazîyet orte der o. Seke Nazim şarî rê vano: "Ziwanê mi nêşono vajo la zêdeyê qebehetî to de yo."

Îdarekerdoxê dewlete gerek rew ziwanê xo bivurnê û ziwanode bîn qisey bikerê. Gerek no ziwan ziwanê haştîye, ziwanê heskerdişî bibo. Winî nêbo, ziwano ewreyen meşte beno felaketê ma pêroyîne, peynîya ma ano. Her çî ra ver gerek "dîn" malzemeyê sîyasetî mebo. Dînê kesî kesî rê serevde nêbo, her kes bi dînê xo, bi fikrê xo, bi înancê xo biciwîyo.

Demokrasîyan de hukumatî yenê, hukumatî şonê. Şîyayîşê yew hukumatî derbe nîyo, luzimîya demokrasî ya. Wexto ke ma demokrasî ra çîyê fehm kenîme, eke demokrasî wazenîme, eke wazenîme her kes zereyê parlamentoyî de xo îfade bikero, o wext gerek ma vurîyayîş kî qebul bikerîme.

Weçînitişê Tirkîya wa xeyr bo, awbendî wa birijîyê, demokrasîyê ma wa berz bo, ma pêro pîya aştîye de biciwîyîme.

BasNûçe 09 - 15 Haziran 2015



# Ciwanên zaza çima beşdarî DAİŞ'ê dibin?

Piştî ku DAİŞ li Rojhilata Navîn belav bû û bi rêbazên hovane herêm zivirand 'mezbaxaneyê' di nava civak û gelên derdorê de jî hin balkêşî û rûdanên ku di hişê mirov de pirsên nû nîşan didin derketin holê. Yek ji van jî bêguman 'beşdariya' nava DAİŞ'ê ye. Wek tê zanîn li Tirkiye'yê hema bêje li hemû bajaran bi dehan kes diçin nava DAİŞ'ê. Lê di vir de balkêşî ew e ku li Tirkiye û Kurdistanê bajarê ku hejmara herî mezin bo beşdariya DAİŞ'ê pêk tê Çewlig e. Çewlig ku wek bajarakî zazayên şafiî tê zanîn bi beşdariya DAİŞ'ê di roje-vê de ye lê ti kes vê pirsgirêkê nîşan nade û li ser tu xebatên berbiçav jî nehatine kirin. Gelo çima li Çewligê ewqas kes berê xwe didin DAİŞ'ê? Civaknas Yusuf Ziya Döğer ku li ser meseleyên olî, paşxana wê ya dîrokî û oldariya di nava zazayên şafiî de ne gelek xebat kirine bo bersiva vê pirsê nêzikahiya dewletê, oldariya fermî û medrese û feqîtiya heyî nîşan dide.

Her çiqas 'Zaza' û 'DAIŞ' di hişmendiya me de du peyvên ji hev pir cuda xuya bikin jî, li Çewligê ev herdû peyv têkelî hev bûne. Li gor lêkolînan, heta niha hejmara kesên ku ji Çewligê beşdarî DAIŞ'ê bûne gihîştiye 600 kesan. Ji bo em sedemên nepenî yên vê rewşê, cudabûna zazayên alewî û şafî û paşxana dîroka rewşa olî ya za-zayan hîn bibin, me bi Civaknas Yusuf Ziya Döğer ku di van mijaran de şareza ye re hevpeyvîneke frawan kir.




**Kalê Badî**

**Wek beşeke civakî ya Kurdistanê, zaza kî ne û pêwendiya wan û kurdîtiyê çawa ye?**

Nabe ku mirov civakan wek gelheyeke ku di warê çawaniyê de homojen binirxîne û pêşbîniyan bike. Ev berovajiyê zanist û daneyên civakî ne. Wek hemû gelan, gelê kurd jî di avahiya xwe ya civakî de cudahiyan dihewîne. Ev cudahî hem di warê baweriyê hem jî di warê ziman de xwe di-yar dike. Di warê cudahiyên ziman de kurd, li ser çar hêmanên makî têne dabeşkirin û zaza jî yek ji van hê-manên makî ye. Mirov dikare bi rêbaza têgihîştina van cudahiyên ku di ziman de peyda bûne, sedemên vê yekê bispêre şêweyên xwedanaskirina kom û gelên din. Her wiha mi-rov dikare bi pergîkirina civakên din yên ku di raboriyê de bi wê civakê re têkildar bûne, binav-kirina ku ji bo destnîşankirina danasên civakan têne kirin, aşkere bike. Di dîrokê de gellek nimûneyên binavkirinên etîmolojîk yên ku xwe dispêrin danasan hene. Bêjeya 'Tirk' a ku gelê tirk dide nasîn, ji lêkera erebî ya 'Tereke' tê. Dema tirk ji Asyaya Navîn koç dikin û têne Rojhi-lata Navîn û pergî ereban dibin, ereb ji bo wan danasînin peyva 'Etrak' bikar tînin. Di nav kur-dan de danasîna zazayan bi ser hin îdeayên şaşdîtinî ku goya navê hozekê ye tê kirin. Lê belê xebatên ku li ser Zend Avestayê (Ahura Mazda tu xu mira rastî vaj) têne kirin diyar dikin ku zimanê hêrî nêzîkê Zend Avestayê zazakî ye û ev yek jî nîşan dide ku di nav civaka kurd de zaza, civata herî kevnar e. Her wiha ji alî etîmolojîk ve jî zazakî, ji ber taybetiyên xwe yên regezî (nêr û mê) ve, mirov dikare bêje ku ji zaravayên din ên kurdî geşedartir û qedîmtir e. Lê belê qebûleke gelemper heye ku peyva 'Zaza' piştî îslamiyetê peyda bûye. Nêrîna ku heta dema Se-laheddînê Eyyûbû ku Qudsê ji xaçperestan stendiye, peyva zaza nehatiye bikaranîn nêzîkî mîsogeriyê ye. Hê jî ne diyar e ku ev peyv kêngê û ji bo çi hatiye bikaranîn.

Wek tirkî, erebî, farsî û zimanên din, kurdî jî kirûyek formel ê razber e û ji bo danasîna civakên ku zaravayên kurdî dipeyivin tê bikaranîn. Kurmancî, soranî, goranî, lorî û kirdkî/dimilî yan jî zazakî jî pêşnûmayên razber ên nîşaneyên şênber ên zimanê kurdî ne. Ji bo têgihîştina danasa zimanekî, daneyên ku tenê ji zaravayekî têne wergirtin têr nakin. Ji bo daneseke rasteqîn û en-camên nêzîkî mîsogeriyê, pêdivî bi daneyên hemû zara-vayên wî zimanî heye. Ji ber vê yekê, bi ser veqetandina ziman û zarava ve mirov dikare di nav civaka kurd de bandora zazayan bibîne. Ez wiha bêjim: Zaza, ji Çi-yayên Zagros ku sînorê Başûr û Rojhilatê Kurdistanê ye hatine erd-nîgariya ku îro lê dijîn. Wek dîrokî hişmendiya hozî ya zazayan vê yekê dispêre hezar salên dawî.

**Bi raya te di pêvajoya dîrokî de wek olî yan jî mezhebî, zazayên alewî û şafiî çawa ji hev veqetiyan û piştî vê dîroka li paş mayî, çima dema ku di raya giştî ya kurd û Tirkiyeyê de zaza tê gotin tenê alewîtî tê hişê mirovan? Gelo di nav kurdên ku wek sêwiyên alema îslamê têne dîtin de jî yên sêwî zazayên şafiyî ne?**

Çawa ku bi gelemperî gel ne homojen bin, beşên wan gelan jî bi ne homojen in. Kurdên zaza ji alî devokan ve ji sê beşên bingehîn pêk tên. Sedemê cudahiya devokên zazakî tenê taybeti-yên etîmolojîk nînin, her wiha hêmanên bawerîtiyê jî egereke mezin e. Bi kurtasî ez bêjim: Yên zazakiya bakur dipeyivin alewî, yên zazakiya başûr dipeyivin hanîfî û yên zazakiya navendî dipeyivin jî zazayên Şafiyî ne. Yanî guherîna baweri-yan bandorê li guherîna devokan jî kirî ye. Ger ku mirov vê guherîna baweriyê dahûrîne, di guherîna şafiyî û henefîtiyê de bandora desthilatiya navendî tê dîtin. Yên ku têkiliyên wan bi desthilatiya navendî re xurtin an jî ji bêçarî hatine xurtkirin, ji mezheba henefî, yên ku li derveyî ban-dora desthilatiya navendî mane jî şafiyî ne. Yên alewî jî ew beş in ku di pêvajoya mislimanbûyînê de dest ji baweriyên xwe yên kevn bernedane. Dema ku mirov li rîtuelên wan ên olî dinihêre, ev yek aşkere xuya dibe. Sedemê ku dema zaza tê gotin, alewî tê hişî mirovan jî empozekirina per-galê ye. Bi raya min feraseta qewirandinê ya pergalê, ji bo karê xwe hêsantir bike, operasyonên bîreweriyê pêk tîne. Sede-meke di ya vê yekê jî bi entegrasyon an jî hewcedarkirina pergalê ye. Zazayên Dêrsimê, piştî 1938'an, ji bo bi tevahî têk neçin ketin nav pergalê, lê belê zazayên Çewligê piştî pêvajoyên 1925 û 1927'an xwe ji pergalê dûr xistin û nepenî bûn. Ji ber vê yekê Dersim derkete pêş û birew-eriya zazatiyê bi alewîtiyê ve hate girêdan. Di rastiyê de ez ne kurdan sêwiyên alema îslamê û ne jî zazayan sêwiyê kurdan dibinim. Wek hebûn, sêwîtî tunebûna bav e. Lê belê ne kurd û ne jî zaza ji çawaniya hebûnê ne mehrûmin. Mehrûmiya wan ew e ku ji alî metingeran ve hatine binpêki-rin. Çawa ku mafê kurdan ji alî hevoldarên wan ve hatibe desteserkirin, zaza jî piştî salên 1950'an ji alî te-vgerên kurd ve nehatine dîtin.

**Meyla zazayên alewî bêtir li ser rêxistinên çep yên yasayî û deryasayî ye. Berovajiyê vê, zazayên şafî jî başdarê gellek rêxistinên din, bi taybetî jî rêxistinên wek DAIŞ û yên selefî dibin. Tu van meyldariyên cuda yên zazayan çawa dinirxînî?**

Berî nirxandinê ez dixwazim vê yekê destnîşan bikim ku rikberiya alewîtî û sunnetiyê rikberiyeke bawerîyê û dîrokî ye. Tenê bi daneyên îro yên rojane nayê ravekirin. Herêma Dêrsimê, piştî komkujiya 1938'an, razî bû ku tafilê sûd ji warê perwerdehiya dewletê werbigire. Ciwanên alewî yên xwenda bi nakokiyên pergalê hesiyan û ji ber şêweyê raboriya xwe ya bawerîtiyê xwe nêzîktirî çepgiriyê dîtin. Ji ber vê yekê çanda ku nifşên berê afirandin ji bo nifşên dû wan bû referans û li cem wan ev meyldarî pêk hat. Ji alî din ve zazayên şafî, piştî komkujiyên 1925 û 1927'an têkiliyên xwe bi dewletê re qut kirine û opozisyoniyeke bêden kirine. Lê belê mirov dibîne ku li herêmên ku zazayên şafî lê dijîn bandora medrese û dezgeha şêxîtiyê serdest e. Ji ber ku kevneşopiya medreseyan şertên fiqihê derdixe pêş û şêxîtî jî ji bo rizgariyê Zuhdiyê derdixe pêş, kesên ku di bin tîna van dezgehan de digihîjin, hem rikberiya pergalê dikin hem jî dikebin lêgerîn-eke necatiyê. Ji ber van sedeman zazayên şafî dereng beşdarê dezgehên perwerdehiyê yên dewletê dibin. Perwerdehiya wan a herêmî rê nedaye ku wek zazayên alewî bibin meyldarên çepgiriyê. Ji ber ku tenê bi gotinê be jî tevgerên îslamî yên ku di salên 1960'an de bi hêz dibin wek rikberên pergalê xwe didin nasîn, meyla zazayên şafî diçe ser van tevgeran. Lê belê ev îslamiyên tirk ji zulm û zoriya hundurê Tirkiyeyê bêtir zulm û zora ku li ser mislimanên derveyê Tirkiyeyê pêk tê dixin rojeva xwe û ji ber vê yekê jî zazayên ku di nav van tevgeran de cih girtine jî di bandora vê yekê de mane. Lê ez dixwazim vê yekê dûbare bikim: Zaza di dîroka xwe de her dem rikberên desthilatê bûne. Wek nimûne; Serhildanên Celaliyan ku 250 salan serê Osmaniyan êşandiye, şerê zaza û desthilatiya Osmanî ye. Ev giyana serhildêrî, hem di zazayên alewî hem jî di yên şafî de heye û vê yekê rê daye ku zaza beşdarî rêxistinên deryasayî bibin

**Di nivîseke xwe de tu dibêjî, 'Di çanda zazayên Çewligê de xweşbîniya ku ji medreseyan hatiye wergirtin tîna xwe li nirxên wan ên olî jî kirî ye' Gelo ev çanda ku tu qala wê dikî û tevlîbûna ciwanên zaza ya DAIŞ û komên tûndrew ên îslamî ne dûalîtî ye?**

Weke min got, tu avahiyeke civakî ne homojen e. Divê tîna dezgeha medreseyê û şêxîtiyê bê dîtin. Lê belê herêmên ku li derveyî tîna van dezgehan mane jî hene. Li van herêman tîna perwerdehiya olî kêm e. Her wiha di zazayan de taybetiyên çînî ku gundan jî xistiye bin bandora xwe heye. Piraniya kesên ku beşdarê van komên tûn-drew dibin ji van herêman in. Sedemên vê rewşê jî ew e ku ev kesên hanê ne şarezane ku di navbera zanyariyên olî yên bê bingeh û zanyariyên olî yên ku di pêvajoya perwerdehiyê de tê dayîn de sentezekê pêk bînin. Her wiha êrîşên oldarên nûjen ên perwerdekirî yên li ser kevneşopiya medreseyan jî bandorê li vê yekê kirî ye. Yanî feraseta olî ya nûjen bi medreseyên ku fiqihê grîng nabînin re negoncivîye.

**Angaştên ku ji Çewligê pir kes beşdarê DAIŞ û komên tûndrew dibin hene. Di derbarê vê mijarê de tu xebatên îstatîstîkî yan jî pêşîlêgirtina vê rewşê hene?**

Demek berê Abdulkadir Konuksever, ji bo kanala El Jazeere di derbarê vê mijarê de lêkolînekê kiribû. Li gor vê lêkolînê hejmara kesên ku ji Çewligê başdarê DAIŞ û komên tûndrew ên îslamî bûne gihîştiye 600 kesan. Sedemek vê yekê jî bandora ew çewligiyên ku beşdarê şerê Afgan, Bosna û Çeçenan bûne ye. Em baş dizanin ku ji bo pêşîlêgirtinê tu tişt nayêne kirin. Tê bawerkirin ku dewlet ji vê rewşê re bêdeng e. Dewlet ji hebûna van komên tûndrew haydar e, lê belê bi tu awayî mudaxeleyî vê rewşê nake.

**Bandora kevneşopiya medreseyan li ser zazayên şafî çawa bûye?**

Medrese di avahiya civakî ya zazayên şafî de pir grîng e. Bi taybetî dema ku mirov bala xwe dide pêvajoya piştî kom-arê, zazayên şafî bendekê xistine navbera xwe û dewletê û ji bo çareserkirina pirsgirêkên xwe yên navxweyî melayên medreseyan weke hakem dîtine. Ev mela jî bi qasî zanyariyên xwe, bi rîwangeyeke fiqihî hewl dane pirsgirêkan çareser bikin. Di keyskirina civakî de bandora van melayan, heta 30 salên dawî jî dom kirî ye. Wek nimûne: Di salên 1970'yan de, bi ser Partiya Selameta Neteweyî(MSP) ve, ji ber meyldariya olî ya civaka Çewligê siyasetek hate meşandin û bandora vê siyasetê bingeha siyaseta Çewligê ya îroyîn jî destnîşan dike. Şerîet, ji bo rewşên ku nehatine nivîsîn, urf û edetên civakan wek bingeh destnîşan dike. Lê belê her çiqas li gora ekolên din ên îslamî, perwerdehiya medreseyan bi feraseteke aza-dîparêztire jî, piraniya melayên ku li medreseyan xwendine epîstemolojî û metodolojiya îslamê jî baş têgihîştine. Lê belê, dîsa jî divê mirov dikare sedemên muhafaza-kariya civakê ya ku bi ser melayan ve bi ceste bûye, di mufredata perwerdehiya medreseyan de bigere. Em dizanin ku beşên perwerdehiya bingehîn a mufredata medreseyan ji Kelam, Hedîs û Fiqih e û ev beş ji ber statîkiya xwe, bi hêsanî nayêne guhertin. Her çiqas mela, nexwazin ku bi civakê re nebin rikber jî di warê bikeyskirina civakî de xwedî destûr bûne. Wek nimûne: Sedemê ku di hilbijartina destûra 12 Îlonê de, Çewlig bûye bajarê ku herî zêde rayên redê jê derketine jî mirov dikare bêje ku hem giyana mûxalîfî û hem jî helwesta melayên Çewligê ye.

**Bîrdoziya fermî ya Tirkiye ya paradîgmaya misliman-netewperest bandoreke çawa li ser zazayên şafî kirî ye?**

Heta salên dawî jî bandora vê paradîg-mayê li ser zazayên şafî nebûye. Ji ber feraseta muhafazakar a ku bi ser dezge-hên şêxîtî û medreseyan pêk hatiye û ji ber komkujiyên salên 1925 û 1927'an, Çewligiyan meyla xwe daye ser Partiya Demokrat(DP) û vê meyldariyê bayeke netewperest ku heta 1980'yan dom kirî ye pêk aniye. Helwesta Çewligê ya li dij destûra 82'an, wek rewşeke ku pêşî li entegrasyonê girtiye, lê belê vê yekê bandora DP'yê jî kêm kirî ye. Lê belê bîrdozî û siyaseta kurd a ku piştî salên 90'an gurr bû li vê fe-raseta muhafazakar ne goncivî. Şafiyên ku li MSP'ê digoncivin, piştî ku bi paradîgmayên îslamî re û bi taybetî bi AKP'ê re entegre bûn, vê yekê encama entegrasyona wan a bi dewletê re jî bi xwe re anî. Îro zazayên şafî, di erafa navbera tevgera kurd û desthilata îslamî de mayî ne. Ji ber vê yekê lêgerîna wan a lixweyî hê jî dom dike.

**Nêzîkahiya zazayan a ji zazakî re çawa ye û pirsgirêkên navxweyî yên bi ser zazakî ve der bûne ç inin?**

Bi raya min, ji ber ku zimanê perwerde-hiya medreseyan kurmancî bû, di dema komarê de daxwaza zaza-yan a ziman weke kurmancan xurt nebûye. Daxwazên tevgera kurd ên ku bi ser kurmancî pêk hatin jî sedemek vê rewşê ye. Lê belê ji ber muhafazakariya Çewligê ya ku li vê siyaseta kurd nedigoncivî û ji ber polîtîkayên taybet ên dewletê, zazayên şafî xwe qewirandin. Ev helwestdariya ku kurdnebûna xwe xiste rojeva xwe, di rastiyê de ne heyranê zazakî ye. Tenê bi ser helwesta xwe ya rikber dixwaze hemûna xwe îspat bike. Yanî ne bi ser ziman lê bi ser rîwangeya xwe ya siyasî ve dixwaze hebûna xwe ragihîne. Bêgu-man sedemek din a vê rewşê jî bêxemiya tevgera kurd a zazakî ye. Lê belê, divê mirov xebatên ku bi ser peroşiya têkçûna zazakî ve têne meşandin jî ji bîr neke.

**Weke encam tu dikarî bi kurtasî çi bêjî?**

Bi kurtasî ez dikarim bêjim ku di nav ci-vaka zazayên şafî de şêxên terîqetan, ji bo di nav civakê de cih bigi-rin, bi şêweyeke pragmatîst tevgeriyane. Vê civaka ku bi ser vê rewşê bi ceste bûye, ji alî referansên olî ve roleke negatîf leyîstiye. Ev rewşa hanê, di derbarê kesayetparêziyê de bûye astengeke mezin. Geşbûna feraseta murîdiyê, bi xwe re îtaetê jî haniye û bûye sedem ku civak derî li helwestên cuda big-ire. Tasawûfa ku azadîparêz xuya dike, di rastiyê de ji ber feraseta îteatkariya ji şêx û dergehê re ketiye rewşeke dûalî. Vê dûalî-tiyê bûye sedem ku ciwanên ku kurdîtiyê nas kirine xwe nêzîkî ramanên çepîtiyê bikin. Helwesta muhafazakar a ku di qa-dên di bin bandora melayan de pêk hatiye hişyariya hişmendiya kurdîtiyê dereng xistiye. Ciwanên ku ji kevneşopiya medre-seyan dûr bûne û xwe dane ber perwer-dehiya nûjen a komarê jî, ji ber helwestên durust ên melayan neketine nav lêgerîna ferasetên cihê. Her wiha ev ciwan, ji ber ku nêzîkî kevneşopiyên îslamîne, bi hêsanî beşdarê tevgerên îslamî yên Tirkiyeyê bûne û vê yekê hişmendiya wan a kurdîtiyê jî dereng xistiye. Ekola medreseyan dîsî-plînê ferz dike lê belê ekola terîqetan îteatê ferz dike. Her çiqas hişmendiya kurdîtiyê pêşî bi ser şêx û melayan ve xurt bûbe jî, ji ber rîwangeya ku ji bo he-bûna xwe dom bikin geşandine, kurdîtî xurt nebûye. Belkî ji bo destnîşankirina vê rewşê pêwîstî bi lêkolîna travmayên ku piştî 1925'an di civaka zazayên şafî de rû dane hebe.



# Peytexta çiyayên asê

# Sêrt



**Welat Baz**

Bajarê Sêrtê di nav eyaletên Xerzan, Botan û Mêrdinê de wek xelekeke bicîh bûye. Sêrt di nav hêlîlarên rojhilat ê 38 û 37an û di nav hêlîpanên bakûr ê 42 û 40'an de cîh digre.

### Erdnîgar

Pîvana xaka Sêrtê 5 hezar û 406 km² ye. Xaka bajêr % 75,7 çiya, ji % 24,3 jî zozan û deşt e. Bilindahiyên bajêr nêzî 3 hezar metreyî ne. Çiyayên erdîmê berdewama sîlsîla Torosên Rojhilatê başûr e. Çiyayê Herekolê 2838 metre ye û li erdîma Sêrtê noqta herî bilind e. Çiyayê Reş, Çiyayê Gabarê, Çiyayê Çiravê di ernîgara bajêr de çend ji çiyayên bilindin.

Ji ber ku bilindahiyên erdîmê, di nav sînorê bajêr de deştên fireh tûne ne. Li hin zewiyên derûdora bajêr û nêzî Misircê kiştûkal tê kirin. Ji van zêwiyan berhemên wek fistiq, titûn, genim, ceh û gelek cûrên fêkiyan tên hilberîn.

Xaka Sêrtê ji alî madênên bin erde ve dewlemend e. Li Baykan û Şîrwanê damarên sifir ê dewlemend û dîsa li Baykanê rezerwên fireh ê qromê hene. Li nawçeyên Baykan, Berwarê û Şêrwanê jî çavkaniyên xwey hene.

### Çem

Xaka Sêrtê ji alî çend çemên mezin ve tên avdan. Yek ji wan Çemê Botan e. Çemê Botan ji lûtkeyên çiyayêç Berwarê diherike û di nav geliyên kûr de di xaka Sêrtê de rêwingiya xwe didomîne. Çemê Xerza, Ava Behrancî, Ava Sor jî ji xaka Sêrtê derbasdibin û li deştê tevlî Çemê Tîr, yanê Dîjlê dibin. Dîjle li başûrê bajêr sînorê nav Batman, Mêrdîn û Sêrtê jihev diqetîne.

Erdîma Sêrtê ji alî avgerm û avên mîneralî ve jî dewlemend e. Ji ber li ser axa bajêr heta dema 4an gelek car erdhejên mezin çêbûne û rûyê heremê serûbin bûye, avên ku ji kûrahiyên erzê dizên peydabûne. Li nêzî nawenda bajêr li ser rêya Dihê li herema Billorîs avgermeke ku ji gelek nexweşiyan re başe heye. Li xopana Findik, li Gundê Hista û li herema Lîf gelek avgermên sihî hene. Berî salên şer di mehên havînan de bi sedan kes ji bo pirsgirêkên tendurûstiyê xwe li van avgerman digirtin.

### Rêvebirî

Sêrt li gor sîstema rêvebiriyê parêzgeh e. Bi navên Tillo, Bayqan, Dihê, Misircê, Berwarê û Şîrwan şeş navçe û 271 gund bi bajêr ve girêdayî ne.

Li gor daneyên sala 2014'an hejmara şêniya Sêrtê tevî navçeyan 320 hezar e. Şêniya navçeyên bajêr tev kurd in. Kurdên Sêrtê sunî ne û bi sarava kurmancî diaxifin.

Li nawenda Sêrtê hin malbatên ereb dijîn. Ew li Kurdistanê piştî belavbûna ola Îslamê li bajêr bicîh bûne. Heta çend salên dawîn li bajêr hijmara ereban zêdebû, lê di salên dawîn ji ber sedemên aborî û bandora şer, malbatên ereb koçdikin. Her diçe ev rengê cuda yê demoxrafya Sêrtê kêm dibe.

Sêrt ji rojava ve cîranê Şirnex û Wanê, ji bakûr ve cîranê Batman û Bedlîsê û ji başûr ve jî cîranê Mêrdînê ye.

Bajarê Sêrtê li ser seheyekî ku ji bo rûniştvaniyê destdide hatiye avakirin û di warê bajarvaniyê de herdiçe fireh dibe. Avahiyên bajêr li gor mîmariyê ne bilindin. Di salên sawîn de piştî pêla koçberiyê, li derûdora bajêr taxên nûh peyda bûn û hin aliyên bajêr heta quntarên çiyayên derûdorê dirêj bûn.

### Betanî

Di aboriya Sêrtê de heta salên dawîn sektora sereke heywan xwedîkirin bû. Erdîma bajêr ji bo xwedîkirina keriyan destdar e. Li Sêrtê ji bilî şîr û goştê keriyan, rîs û hiriya wan tê bikaranîn. Rîs zêdetir di çêkirina gore û kulavan de, hirî jî di çêkirina betanî, şal û heybeyan de tê bikaranîn.

Betaniya Sêrtê, navê bajêr di vî warî de bi cîhanê daye naskirin. Di karê betaniyeçêkerî de jin û mêr hevkarî dikin. Rîsandina benikên hirî û boyaxkirina wan ji alî jinan, rîsandina betaniyê jî ji alî mêran ve tê kirin. Di demên kevn de boyaxên xwezayî ku ji nebatan dihat derxistin, dihat bikaranîn, lê di salên dawîn de boyaxên kîmyevî tê bikaranîn.

Di motîvên betaniyan de dîmenên xwezayê û şeklên geometrîk zêdene. Di tevnên Sêrtê de manto, kincê jinan, kepê zilaman û cilên din jî tên çêkirin. Ev berhemên ku bi navê ‚Betaniya Sêrtê' li bazaran tê firotin, di salên dawîn de bihayekî tûrîstîk bidestxistiye û ji bo welatên biyanî tê firotin.

Hostayê betanîçêker hemberê keda xwe bidestnaxin û jiber ku berhemên wan têr nayê naskirin, xebata wan erzan diçe. Betaniyekî ku di dû rojan de tê çêkirin, bi bihayekî kêm tê firotin.

### Sûk

Pez û keriyên Sêrtê sedemê navdariya şivan û kulavên wan e jî. Kulavên Sêrtê jî wek betaniyên vî bajarî navdayî ne. Îro li gelek deveran êdî ev kulav nayên rîsandin. Kulavçêker û firoşkar li sûka bajêr her roj cîhê ku ji wan re hatiye veqetandin, disekinin da ku şivanekî were kulavek ji wan bistîne.

Çiyayên Botanê bi kewên xwe navdarin. Kewên di qefesên Hecî Beşîr de her roj li sûka Sêrtê li benda qedera xwene ku kesek were wan bistîne.

Dikkanên sûka Sêrtê bi berhemên çiyayan tijene. Fêkî, hêjîr û tiriyên wan çiyayan wek çavkaniya şekir e. Penêr û sîrikê bajêr jî navdayiye û yek ji xwarina sereke ne.

Hingivê Berwarê ê çiyayên Botanê temenê însan dirêj dike. Ev hingiv ne tenê li Sêrtê, li hemû Kurdistanê dengdayî ye. Rûnê nivîşk û mast jî li sûka bajêr berhemên serekene.

### Midbex

Midbexa Sêrtê li Kurdistanê yek ji midbexa dewlemed e. Yek ji xwarinên serekê ê Sêrtiyan kebaba biryan e. Biryan qasî ku bi Bedlîsê tê naskirin, wiha wek xwarineke Sêrtê jî tê qebûlkirin.

Bîryan ji laşê berxa ku bi giyayê çiyayan hatiye xwedîkirin, di tendûrên bin erdê de li ser agirê êzingan tê pijandin. Ev taybetî tameke xweş dide goşt. Li sûka Sêrtê li gelek kolanan, dikkanên biryanê, ji bo zikê Sêrtiyan têr bikin, vekirîne.

Serî an jî kele xwarineke heremî ye. Wek gelek bajarên Kurdistanê li Sêrtê jî hin aşxaneyên ku tenê xwarinên serûpêyên lawiran dipêjin, hene. Di van aşxaneyan de şorba hûr û avsîrka serûpê serê şeveqê tê xwarin.

Birinca perde di rojên taybetî de tê çêkirin. Birinc di nav hevirekî ku bi hêk, şîr û rûn ve tê dorpêçan, tevî goştê kewê tê sorkirin û bi baharat û nebatên din tê xemilandin û di qûşxanê de tê pijandin.

### Nav

Li gor hin çavkaniyan navê Sêrtê peyvekî ji zimanê Aramî ye. Li gor hin çavkaniyan navê bajêr ji pevya ‚Keert' tê û ev peyv di Zimanê Keldanî de tê wate ya ‚Bajêr'. Navê bajêr di çavkaniyên Îslamî de jî wek ‚Esard, Saird, Sîrt' an jî ‚Sîrd' derbas dibe. Di nivîsarên kevn ê Suryaniyan de jî, navê bajêr wek ‚Sert, Seerd' an jî ‚Sort' hatiye qeydkirin.

### Dîrok

Heta demên dawîn ji ber kolanên arkeolojîk nehatibûn kirin, dîroka Sêrtê a b.z ne zelal bû. Di sala 1963an de çend grûbên arkeolog li Sêrtê û derûdorê lêgerînên sererdê kirin. Di van xebatan de eşkere bû ku, li ser xaka deverê gelek rêç û bermayiyên dema neolîtîk, kalkolîtîk, tunç, helenîstîk, Roma, Bîzans, Îslam û dema nêzîk hene. Dîroka bajarê Sêrtê, dirêjî 3 hezar sal b.z dema Hûrrî-Mîttaniyan dibe. Di salên hezaran de li heremê Qonfederasyona Naîrî serdest e. Paşê dema dagira Asûr destpêdike. Berî zayînê di salên 612'an de Med, Mezopotamyayê digrin bin hukmên xwe. Heta ku Artêşa Îslamê Kurdistanê bidestxe, Sêrt bi dorê dikeve destê Persî, Îskender, Selokîdî, Partî, Arsakî û Sasaniyan. P.z ku di salên 600'an de Ereb dikevin heremê, ji rojava jî Bîzansî tên Kurdistanê. Di vê demê de herem ji alî mîrên Kurd ve tê birêvebirin. Di salên 1000'an de jî Artêşa Selçûqî dikeve Kurdistanê. Di van salan de li Eskîfê ku Eyûbî dewletekî sazdikin, bandora xwe heta derûdora Sêrtê belavdikin. Dîsa di van salan de Şerefxanî, desthilatiya xwe heta nav sînorên Sêrtê fireh dikin. Di salên 1500'an dan de ku li Kurdistanê desthilatiya Şah Îsmaîlê Sefewî pêşvedikeve, Dewleta Osmanî bi saya Şêx Îdrîsê Bedlîsî di nav eşirên Kurd ê Sunî de dixebite û riza wan digre ku, ew desthilatiya Osmanî nasbikin. Di van salan de Sêrt di destê Mîrê Eyûbî Xelîl de ye. Bi vî awayî di salên 1514'an de jî êdî Osmanî li Sêrtê ne. Rêvebirên Osmanî, Sêrtê pêşiyê wek sancaxekî bi Eyaleta Wanê, di salên 1630'an de bi Eyaleta Amedê û di sedsala 19'an de jî bi Bedlîsê ve girêdidin.

Di navbera salên 1800'an de li Cizîrê Mîrê Botan Bedirxan Beg dewletekî damezirandibû û sînorê dewleta xwe ji Amedê heta Sêrtê û ji wir jî heta Mûsilê fireh kiribû. Serhildana Mîrê Botan heta Dihê û derûdora Sêrtê fireh bûbû. Dîsa Yezdan Şêr ku piştî Bedirxan Beg serhildide, li çiyayên Botan ê derûdora Sêrtê bi Osmaniyan re şerdike. Di salên dawîn de jî li heremê li, dijî rejimê gelek serhildanên mezin û biçûk derketine.

Sêrt di warê rewşenbîrî, zanistî û olî de li Kurdistanê deverekî girînge. Şexsiyetên wek Mele Xelîlê Sêrtî, Şêx Mihemedê Fersafê, Siltan Memdûh, Îbrahîm Heqî, Îsmaîl Feqîrûllah û gelekên din ji xaka Sêrtê derketine. Medreseyên ser xaka bajêr ê wek Tillo û Fersafê ji salên kevn virve wek çavkaniyên welatparêzî û qendîla çanda Kurdî xebitîne.

Sêrt ku heta di sala 1894'an de bi Bedlîsê ve girêdayî bû, di sala 1919'an de wek sancaxeke serbixwe hat birêvebirin. Di van salan de şêniya Sêrtê 65 hezar e. 50 hezarê vê nifûsê Kurdên Sunî, ê din jî ereb, eErmenî û suryanî ne.

Sêrt ku di salên kevn de wek sancaxekî bûye, di bîranînên gerokan de jî derbas dibe. Katîp Çelebî ku di sedsala 17'an de hatiye Sêrtê, vî bajarî wek 'diyarê rabîa' binav dike. Çelebî di bîranînên xwe de peznê trî û ava Sêrtê dide. Generalê Alman Moltke jî ku di sedsala 19'an de hatiye Sêrtê, dibêje wê demê Sêrt ji ber ku bûye sehna şer, wek xerabeyekî bûye. Şemsedîn Samî û Elî Cewad jî ku di sedsala 19'an de jiyane, di berhemên xwe de behsa Sêrtê kirine.

Bajêr piştî salên 1923'an wek parêzgeh hat pejirandin. Di sala 1940'an de li Îlûhê (Batman) petrol hat dîtin û 1944an de ku xeta hesin heta Misircê hat girêdan, Sêrt û derûdorê di warê bajarvaniyê de geşbûn.

Di sala 1990'an de dewletê, ji bo ji nûh ve damezrandina pergala xwe li Kurdistanê hin tedbîran sitend. Yek ji wan tedbîran, biçûkkirin û belavkirîna bajarê Sêrtê bû. Li gor vê pîlanê navçeyên Batman û Şirnex ji Sêrtê hatin veqetandin û bi serê xwe bûn parêzgeh. Herwiha navçeyên Bişêrî, Hezo û Sason jî ji Sêrtê hatin veqetandin û bajêr di warê rêvebiriyê de hat tengkirin.

### Mizgefta Mezin

Wek hemû bajarên mezin û ê kevnare li Sêrtê jî mizgefteke mezin heye. Ji ber ku kîtaba mizgefte nehatiye dîtin, di derbarê wê de jî agahiyên sererast tûnene. Li gor hin çavkaniyan di sala 1129'an de ji alî Siltan Muxsedîn Mahmûd ve hatiye çêkirin. Di sala 1260'an de jî ji alî Siltan El Mucahîd ve hin beş li mizgeftê hatine zêdekirin. Dîwarên camiyê ji derve ve ji kevirên birrandi, ji hindir ve ji molozan ve hatiyê lêkirin. Sê kûbeyên li kêlekên hev bi kemberan ve bihevre hatine girêdan. Seriya neqş û rewşên dîwaran hatine sewaxkirin. Mîmbera mizgeftê a ji darê gûzê li Muzexana Enqerê a Etnografya ye.

Minara mizgeftê di sala 1965'an de tevî mizgeftê hatiye restorekirin. Ji ber baran û şiliyê neqşên çînî a serê minarê xeradibin. Lê dîsa jî motîvên geometrîk û mîmariya minarê baldar e.

Mizgeftekî din ku bajarê Sêrtê dixemlîne Camiya Sûkê ye. Di sala 1265'an de ji alî Siltan Salih Nesredîn ve hatiye avakirin. Baniyê mizgeftê ji 5 qûbeyan ve hatiye sergirtin. Dû deriyên mekana mezin hene. Mîmariya vê mizgeftê jî nêzî mînakên demên xwe ye. Li aliyê din di Mizgefta Cumhûriyetê de ku ew jî li nawenda Sêrtê ye, tê texminkirîn ku ji hawariyên Hazretî Îsa, Yehowa veşartiye. Navê vê mizgeftê berê Hûdûrul Axdar bû.

### Tirba Weysel Qerenî

Li bajarê Sêrtê mekanekî din ê din Tirba Weysel Qerenî ye. Tirbe li gundekî Navça Baykanê li ser rêya Wan û Amedê, li xopana Ziyaretê cîh digre. Tirba ku bi qûbeyekî hatiye sergirtin di sala 1976'an de hatiye xerakirin. Avahiya iroîn taybetiyên xwe yên kevn wendakiriye.

Tirba Weysel Qerenî li Kurdistanê di nav mekanên pîroz de cîhekî sereke digre. Efsana Weysel Qerenî di salên 600'an de derbasbûye. Di efsanê de motîvên wek hevaltiya bi Hazretî Muhamed re û fedekariya di rêya dîn de hene.

Gelê oldar ê heremê û herwiha ji gelek devêrên dûr ê Kurdistanê her sal di mehên gulanê de rojên înê gelek kes tên li ser qebra Weysel Qerenî û ji bo derdên xwe li dermanekî digerin. Mêvanên Weysel Qerenî ji bo dûayên wan bên qebûlkirin, alîkariya xizanan dikin û pere diavêjin ser turbê.

Ji bilî van nawendên olî cîhên wek Medresa Fersafê jî li herema Sêrtê ji mekanên naskirîne.

### Tirba Fakîrûllah

Navça Tillo jî nawendeke pîroz e. Li vê navçê gelek mekanên olî hene. Yek ji mekanên pîroz ê Tilloyê Tirba Îsmaîl Fakîrûllah e. Ev tirbe di sedsala 18'an de ji alî Îbrahîm Heqîi ji bo seydayê wî Îsmaîl Fakîrûllah hatiye çêkirin. Orjinalîta tirbê di restorasyonên salên dawîn de xerabûye.

Di vê avahiyê mînakeke zirav a endezeriya roniyê heye. Îbrahîm Heqî bi qasî alimiya xwe ya olî bi zanistiya xwe jî tê naskirin. Îbrahîm Heqî bi navê ‚Marîfetname' berhemekî jî nivîsandiye û di berhema xwe de li ser astrolojî, coxrafya, fizîk, matematik û gelek beşên din ê zanyariyê sekiniye. Qasi ku tê zanîn Îbrahîm Heqî 40 pirtûk nivîsandiye û herwiha mûtasawifekî navdayiye jî. Îbrahîm Heqî dî di navbera salên 1703 û 1780'an de jiyaye.

Îbrahîm Heqî di tirbê de sîsematîkeke wiha çêkiriye ku her sal roja newrozê tîrêjên rojê ku ji pişt Çiyayê Herekol diavêjin, bi saya prîzmayekî seriya qebra Fakîrûllah ronî dikin. Sirra vê teknîka wî ji alî zanistan ve wek ecêbekî tê şîrovekirin. Ev taybetiya avahiyê di restorasyona sala 1963'an de xerabûye.

Her sal gelek kes qebrên Fakîrûllah û Îbrahîm Heqî ziyaret dikin. Di nav mêwanan de gelek kesên zanist ji hene ku duxwazin berhem û ramanên Îbrahîm Hakî nasbikin.



# Doza Licê hîn jî di nav mijê de ye!


Gündem
Lice'de 150 genç kayıp

Tuwanê Dodkî

Di salên 90'an ku şerê di navbera PKK'ê û dewletê herî dijwartir bûbû de gellek komkujiyên ku kiryar û kujerên wan nehatin darizandin û yên ku doz li wan hatin vekirin jî ji ber demboriyê hatin betalkirin û ser wan hatin girtin pêk hatin. Yek ji van komkujiyan ku di 22'yê Cotmeha 1993'yan de rû da û bû sedema qetilkirina 13 sivîl, 2 leşker û Korgeneral Bahtiyar Aydın jî komkujiya Liceyê bû. Bi hinceta ku Gerîllayên PKK'ê ketine bajar û di mizgeftekê de kom bûne, mizgeft bi tang û helîkoptêran hate bombekirin û bajar bû kavil. Doza wê piştî li çend bajaran geriya niha li Îzmîrê ye lê hê jî bê encam e.

## Çima Lice bû kavil

Di 22'yê Cotmeha 1993'yan de yekîneyên artêşa tirk ketin nav bajarê Liceyê û bajar dane ber gule û bombeyan. Gellek avahî, mal û kargeh hatin şewitandin û gulebarankirin. Mizgefta ku bi hinceta Gerîllayên PKK'ê tê de kom bûbûn bi tang û helîkoptêran hate bombekirin û rûxandin. Lice ji mêj ve hêlîna kurdayetî û welatparêziyê bû. Bêguman bijartina Leceyê ji ber vê taybetiya wê bû. Di encama van êrîşan de li gel ziyaneke mezin a aborî 13 jê di mizgefta ku goya PKK'yî tê de kom bûbûn bi giştî 20 hemwelatî hatin qetilkirin, 2 leşterên artêşa tirk hatin kuştin û Korgeneralê artêşê Bahtiyar Aydın jî bi şêweyeke nepenî bi çeka sûîkastê ya karnas hatin kuştin. Di encama 4 rojên ji mirinê de bajar bû wek kavil û bi hezaran şêniyên Liceyê dest bi koçê kirin û berê xwe dane bajarên din. Gelheya Liceyê ku beriya vê êrîşê nêzîkî 10 hezarî bû piştî êrîşê dakete 300'an.

## Weke pevçûneke ji rêzê hate nîşandan

Piştî vê karesatê, çapemeniyê ew wek pevçûneke ji rêzê ragihand û dihate xwestin ku PKK adres bê nîşandan. Lê belê piştî ku ji bo lêkolîna karesatê lijneyên ku ji endamên dezgehên sivîl pêk tên çûne Liceyê û karesatê lêkolan, diyar bû ku ev karesat ne pevçûna PKK'ê û dewletê, berovajî ev êrîşa dewletê ye û dewletê bi kuştina Bahtiyar Aydın ji xwe re hincet afirandiye. Bi diyarbûna şêweya kuştina Bahtiyar Aydın re hate dîtin ku ev êrîş perçeyek ji siyaseta dewletê ya valakirina bajar e. Piştî van lêkolînan her wiha diyar bû ku li bajarê Licê ku bi giştî ji 400 avahiyan pêk tê, nêzîkî 300 avahî rûxiyane û yên mayî jî xesareke mezin xwarine.


Ji ber ku li her çar parçekurdrine û li wir êdî li hemû dezgeh û dibistanan zarok hînî zimanê xwe dibin jî, li parçeyên din ew derfet hîn pêk nehatiye. Li Tirkiye'yê heta çend sal berê kurdî zimanekî qebûlnebûyî bû axaftin nivîsandin

## Doz piştî 2 bajaran arasteyî Îzmîrê bû

Her çiqas di destpêkê de di derbarê vê karesatê de li Tirkiyeyê dozeke ku dikaribe encamên baş werbigire nehatibe vekirin jî, doza vê karesatê ji alî hin parêzerên demê ku parlamentê HDP'ê Hasîp Kaplan jî di nav de ye li diçe Dadgeha Mafê Mirovan a Ewropayê(DMME). Lê belê, bi rêbaza dostane ya bi Tirkiyeyê re bêyî ku dewlet ji ber sûcê dij-mirovahiyê bê darizandin, bi encamên hêsan bi dawî dibe. Piştî 20 salan di 2013'an de doz hate vekirin û di 16'ê Çileya 2014'an de, rojek beriya ku doz ji demborî bê betalkirin, ji alî Serdozgeriya Amedê ve hate pesendkirin. Di çarçoveya dozê de ji Fermandarê Alaya Cendirme ya Amedê Albayê teqawidbûyî Eşref Hatipoğlu û Teymenê bala Tünay Yanardağ ku wek kiryardar têne dîtin re, bi hinceta 'Bi zanebûn kuştina mirovan,' 'Teşwîqkirina serhildanê û hevkuştina gel' û 'Ji bo sûc pêkanînê derfet afirandinê' bi cezayê muhebetê yê girankirî û cezayê zindanê yê 24 salan ceza hate xwestin. Dosyeya vê dozê, ji ber peroşiya asayîşê çû Enqereyê û ji Enqereyê jî ew şandin Eskiheşîrê. Lê belê ji ber ku li Eskîşehîrê Dadgela Cezayê Giran a ji xala 10. a tekoşîna li dij terorê berpirsyar tune bû, paşê doz şandin Îzmîrê.

## 'Bi arastekirina dozê mexdûr dubare mexdûr dibin'

Serokê Baroya Amedê Tahir Elçî ku parêzeriya vê dozê dike, di derbarê mijarê de anî ziman ku bi arastekirina vê dozê ya bajarên Enqere, Eskîşehîr û Îzmîrê mexdûrên Licêyî dûbare hatine mexdûrkirin. Elçî got: "Di sala 1993'yan de Licê hate şewitandin, licêyî hatin kuştin, lê belê îro licêyî dûbare têne mexdûrkirin" Elçî da zanîn ku heta ku hiqûq rê dide ew ê dozê bişopînin û hewl bidin ku sûcdar bêne darizandin û ziyanên liceyiyan bêne tanzîmkirin. Tahîr Elçî, di derbarê arastekirina bajaran a dozê de da zanîn ku ev doza ku li Dadgeha Amedê destpê kiriye, her çiqas gumanbar, bi şêweya negirtî hatine darizandin û tu pirsgirêkeke ewlehiyê tune bûye jî, bi daxwaza gumanbaran, Wezareta Dadê bi hinceta ku Amed ne ewle ye, dozê şande Enqereyê, ji Enqereyê şandin Eskîşehîrê û ji ber ku dadgeheke ku li vê dozê binêre tune bû, ji Eskîşehîrê jî şandin Îzmîrê. Elçî ragihand ku dozên wek ya Licê divê li dadgehên ku nêzîkî cihê karesat lê qewimîne bêne dîtin, lê belê di dozên wiha yên ku sûcên peywirdarên dewletê pêk anîne de ev yek tê piştguhkirin. Elçî ragihand ku ji bo Licê dadweriyeke cuda tê pêkanîn û bang li dezgehên fermî û berpirsên wan kir ku hestiyariya

We ji vê dozê re nîşan bidin û rê li ber pêwîstiyên hiqûqî vekin.

## Belgeyên qetlîamên 90'an di jûra kozmîk de ne

Di derbarê doza qetlîama Licê de Berdevkê Platforma 'Licê li dadweriyê digere' Şiyar Kaymaz jî ragihand ku wek platform ew 14 dozên sûcên ku di salên 90'an de pêk hatine dimeşînin û doza qetlîama Licê jî yek ji wan dozan e. Kaymaz anî ziman ku dewlet bi hinceta demborîtiyê hewl dide ku dozên kiryarên dij mirovahî û kuştinên kujer ne diyar veşêre û eger nikaribe veşêre û dozên wan bêne vekirin jî, bi rêbata arastekirina navbera bajaran van dozan ji rojevê derxîne da ku ser wan bigire. Kaymaz got: "Hemû dozên sûcên salên 90'an, bi hinceta asayîşê arasteyî bajarên din dibin. Doza qetlîama Licê jî yek ji wan dozan e ku bi heman hincetê arasteyî bajarên din ên Tirikiyeyê bû. Berê dewletê van dozan di refan tozgirtî de li benda demboriyê dida sekinandin lê niha jî bi arastekirina bajarên din, hewl dike ku van dozan di sarincan de bitevizîne" Di derbarê belgeyên komkujî û kuştinên salên 90'an de jî Kaymaz got: "Hemû belgeyên kuştinên kujernediyar û komkujiyên ku di salên 90'an de pêk hatine di jûra kozmîk a Serfermandariya Giştî de têne parastin û eger dewlet bixwaze dikare hemû sûcên ku di wan salan de hatine kirin aşkere bike" Berdevkê Platformê Şiyar Kaymaz ji bo van dozên salên 90'an pêwîstiya Komîsyona Lêgerîna Rastiyan destnîşan kir û anî ziman ku tenê komîsyoneke wiha ku ji alî siyasî ve tê piştgirîkirin dozên wiha dikare bi dadwerî bêne biencamkirin. Kaymaz got: "Pêwîstî bi vê komîsyonê heye. HDP, di vê mijarê de çi ji dest wê tê dike, lê belê ji helwestên hikûmetê û partiyên siyasî yên din em ne bi hêvî ne" Şiyar Kaymaz da zanîn ku ew wek platform, ji bilî vê dozê 14 dozên din ên kujer ne diyar jî dişopînin û balê kêşa ser wê yekê ku hemû dozên kujer ne diyar ên salên 90'an ji bajarên din ên Tirkiyeyê re hatine arastekirin û got: Ev polîtîkayek dewletê ye û hemû dozên kuştinên salên 90'an de ev polîtîka tê meşandin û tê xwestin ku ev doz bi awayekî bêne betalkirin"







Komeleya Bilindkirina Jinên Kurd

# Di dîroka tomarnebûyî de rêça jinan

Evîndar Tekîn

Piştî ku li cîhanê ramana neteweperwerî belav bû, bandora wê weke li her qadên cîhanê di nava rewşenbîrên kurd de jî tîn da. Ji sala 1908'an heta 1919-20'an, gelek dezgehên siyasî, hewl dan ku kurd jî mafê xwe yên netewî bidestxin û bo vê jî gelek xebat hatin kirin. Yek ji van komeleyên ku di nav vê hewldanê de bû jî, Tealî Nîsvan-î Kurd ango Komeleya Bilindkirina Jinên Kurd bû. Ev komele ji hêla jinên neteweperwer ên kurd ve, li Stenbolê hatibû damezirandin. Li gor zanyariyên heyî ev komele nêzîkî 3 mehan li dar maye û wek dezgehên din ên kurd ew jî hatiye girtin. Armanca vê komeleyê ewbûye ku ne tenê li Stenbolê, li Kurdistanê jî xebatan bimeşîne lê ev yek pêk nehatiye.



## Di vejîna netewî ya kurd de jin

Di destpêka sedsala 20'an de di nav bizavên siyasî yên osmanî de êdî fikra neteweperwerî hêdî hêdî serdest dibû. Rewşenbîr û neteweperwerên kurd jî di vê baweriyê de bûn ku ji bo bidestxistina mafên netewî yên gelê kurd hewldana belavkirina hest û ramanên netewî di nav kurdan de divêt. Neteweperwerên kurd di nîqaşên xwe de gelek caran bilêv dikirin ku beyî bêşdarbûn û pêşveçûna jinan, civakeke modern a kurd nayê avakirin. Lewre li hemû cîhanê wisa bû. "Xasma piştî Şerê Cîhanê yê Yekem, jinên neteweyên pêşverû bi qasî mêran di nav şerî de bûn. Rola jinan di peşveçûna neteweyan de gelekî girîng e."(Memdûh Selîm Beg)

Jinên kurd, yekem car di sala 1913'an de ketine qada siyaseta kurdî. Gotara jinan, ji mafên wan zêdetir wek "di afirandina netewa kurd de rola jinan" ketiye nîqaşê. Sedema vî tiştî jî bi kurt û kurmancî, pêdiviyeke bi lezûbez jê re hebû. Kurd di bidestxistina mafên xwe de derengmayî bûn. Lê em dibînin ku rola jinan di avakirina netewî de giş ji hêla mêran ve hatiye bilêvkirin. Gava em bi awireke giştî li van gotaran dinêrin em dibînin ku jin; wek mamosteyên ewil û herî girîng ên nifşên nû ên neteweperwer tên pênasekirin. Her wiha, bo veqetandina cudahiyên netewa kurd ji netewên din jî, taybetmendiyên jinên kurd, xasma jiyana jinên gundî ku digotin "jinên kurd ên gundî, hem ji jinên bajarî hem jî ji jinên netewên din azadtir in" dihatin bikaranîn. Wekî encama van gotaran ku di kovargeriya kurdî de dihatin nivîsîn, Komeleya Bilinkirina Jinên Kurd (Kürd Kadınları Tealî Cemiyeti) derçû. Piştî avakirina wê, neteweperwerên kurd ên wekî Ezîz Yamûlkî, Memdûh Selîm Beg, Evdirehîm Rehmî Hekariyan, di kovara Jînê de kêfxweşiyên xwe anîne zimên.

## Komeleya Bilindkirina Jinên Kurd tê damezirandin

Di 2'yê Pûşpera 1919'an de Memdûh Selîm Beg, mizgîniya damezirandina vê komeleyê dide. (İki Eser-i Mebrûr- Jîn-Hej:20): "Ji ber vê komeleya alîgirê kurdayetiyê em çiqas sipasdar bibin jî têrê nake." Komele wek şaxeke Komeleya Bilindkirina Kurd (Kürd Tealî Cemiyeti) hatiye damezirandin. Ji nîzamnameya komeleyê em têdigiihîjin ku armanca wan ev in: a) Bi awayekî modern, pêşveçûn û bilindkirina jinên kurd b) birêkûpêkkirina jiyana malbatî a kurdan c) peydakirina karî an jî alîkariya bi pereyî bo jinebî û sêwiyên ku ji ber koçberîyê perîşan bûne d) weşandina rojname, pirtûk û belavokan û dayîna konferans û dersan bo endamên komeleyê û li cihên cihê ên Osmanî vekirina pirtûkxane, şaxên komeleyê, eywanên nîqaşê.(xalên 2. Û 3. ên nîzamnameyê ) Jê diyar e ku li aliyekî hewldana dermankirina birînên gelê kurd didin, li aliyekî din jî dixwazin hizra neteweperweriyê di nav koçber, karker û xasma jinên kurd de bi rêya rojname, konferans, belavok û hwd. belav bikin. Bi taybetî xala 4emîn a nîzamnameyê vê yekê pir zelal diyar dike: "Bu telkînat(propaganda) millî intibahı(şiyarkirin) istihdaf eder."

## Mewlûd û axaftina Dr. Emcûm Yamûlkî

Komeleyê, di 20'ê Pûşbera 1919'an de li Sultanahmedê mewlûdek daye. Di dawiya vê mewlûdê de Dr. Encûm Yamûlkî Xan, axiviye: "Gelî Xaniman! Di van rojên ku çarenûsên her miletî teşeyên cuda digirin û mafên her miletî tên dayîn de, em jî mafên xwe dixwazin. Lewre bi milyonan kurd hene û kurdistaneke mezin! Beşdarvan giş soz û qerar danîne ku ew ê bi her awayî piştgiriyê bidin û bo bilindkirina kurdayetiyê çi pêwîst be pêk bînin." Ji vê mewlûdê diyar e ku komele, xwedî armanceke veqetînxwaz e û neteweperwer e. Çalakiyên din ên vê komeleyê bi qasî vê mewlûdê siyasî nîn in. Komeleyê, 19ê Îlona 1919an de gelek zarok sinet kirine û bo lêçûna vê sinetê jî şevbihêrkek li dar xistiye.

Cihê mixabinî ye ku di derbarê endamên komeleyê de tu agahî di çavkaniyên heyî de tunene. Bes ji nivîsareke li Tîflîsê hatiye weşandin em têdigihîjin ku Dîlber Bedirxana jina Kamil Bedirxanî li Stenbolê beşdarî komeleyê bûye. (rojnameya Zarya Vastoka-1919) Her wiha em ji nivîsara Encûm Xan a bi navê "Bir Hitabe" (Jîn-22) têdigihîjin ku Dr. Encûm Yamûlkî, di dawiya mewlûdê de wek serekeke komeleyê axiviye. Lê Encûm Ymûlkî Xan kî ye? Ew, li Silêmanî hatiyê dinê. Keça Mistefa Paşayî yê ku di çavkaniyên tirk de wek 'Kurd Nemrûd Paşa' derbas dibe û yek ji çalakvanên rêxistinên kurd e. Ji ber zorariyên siyasî vegeriyayê Başûr û di hikûmeta Şêx Mehmûd Berzincî de cih girtiye. Diyar e ku Emcûm Xanim, di malbat û civakeke welatparêz de mezin bûye. Piştî ku zêrandina romiyan a li ser sazî û çalakvanên kurd zêde bû, Komeleya Bilinkirina Jinên Kurd tê girtin, Encûm Xan di sala 19227an de têrkî OOsmanî dike û li Fransayê bi cÎh dibe. Di sala 1968'an de jî li Parîsê diçe ser dilovaniya xwe.





## Emîne Xanima seroka komeleyê

Ji xeynî Encûm Xan, em ji rojnameya "Îstîklal"ê têdihigîjin ku Emîne Xana jina Şerîf Paşayê revebirê Komeleya Bilidkirina Kurd (Kürd Tealî Cemiyeti), ji Parîsê serokatiya vê komeleyê pejirandiye û bi telgrafekê hewldana wan pîroz kiriye. Lê Emîne Xan, kî ye? Emîne Xan, 10 salên jiyana xwe li Stockholma Swêdê derbas kiriye. Yek ji mezintirîn rojnameya Swêdê, bi wêneyekê behsa wê kiriye ku wê, tê de rewşa jinan nirxandiye û jinên rojhilat û rojavayî daye ber hev û rola jinan di geşedana mirovahiyê de rave kiriye. (Svenska Dagbladet-1908) Emîne Xana navdar, di nav çapemeniya Swêdî de wek jineke bedew, jîr û xwende tê nasîn. Hatiye gotin ku ew, girêdayî kevneşopiyên xwe ye. Her wiha wê, di bin bandora femînîstên Swêdî wek Frederîka Bremer, Prof. Ann-Margret Holmgren de maye û çalakvaneke komeleyên femînîst û xêrxwaz bûye. Şerîf Paşayê mêrê wê, piştî koça Ewropayê a ji ber zêrandina Evdilhemîdî, li hemberî zordariya Îttihad û Terakkiyiyan sekiniye. Emîne Xan jî piştgirî daye vê têkoşîna mêrê xwe û ji ber vê jî hatiye darizandin. Cezaya nefîkirinê jê re hatiye dayîn. Roja ku Îttihad û Terakkiyiyan li mala wan êrîşî wan kiriye, Emîne Xan bi wêrekî tevgeriye û ev wêrekiya wê di rojnameya New York Timesê de hatiye nivîsîn. Emîne Xan û Şerîf Paşa, di dawiya Şerê Cîhanê yê Yekem de, hewldana ragihandina daxwazên netewa kurd dane.






## Kurd-Der

# Li paytexta Tirkiye'yê pireke kurdî

**Ji ber ku li her çar parçeyên Kurdistanê dewletên serdest polîtîka û pêkanînên herî mezin li ser zimanê kurdî danîne û hemû rê ji ziman re qedexe kirine, di nava kurdên van her çar parçeyan de jî cûdakarî û li hev dûriyek heye. Herwiha tevî ku li Başûr destkeftiyên polîtîk rê li ber ziman jî vekirine û li wir êdî li hemû dezgeh û dibistanan zarok hînî zimanê xwe dibin jî, li parçeyên din ew derfet hîn pêk nehatiye. Li Tirkiye'yê heta çend sal berê kurdî zimanekî qebûlnebûyî bû axaftin nivîsandin û karên çapê her di bin**




**zextên dewletê de bû. Lê belê piştî ku ew dundî sist bû û hin derfet derketin, li her deverê xebat hatin destpêbûn û saziyên têkildar hatin damezirandin Herwiha yek ji van dezgehan jî Kurd-Der e ku li Enqere'ya peytexta Tirkiye'yê hetibû avakirin û di destpê de rastî gelek zext û astengiyan hedibû. Kurdî-Der ku piştî avakirinê bi lez dest bi xebatên çandî, hunerî û zimên kir di vê demê de gelek kes ferî zimanê xwe kirine û niha jî ew xebat bi berfirehî didomin.**

**Bêrîvan Gerdenmorî**

Komeleya ku di destpêkê de bi kombûna gelek kesên ji nêzikahî û siyasetên cûda yên kurdan hat avakirin li ser çand û zimanê kurdan heta niha xebatên balkêş kirine û di folklora kurdan de jî xebatên wan didimoin. Komeleya ku bi piştgiriya endam û rêvebirên xwe li ser piya ye heta niha bi dehan qursên ziman dane destpêkirin û wek yekem saziya ku kurdên li Enqere'yê kiribin fêrî zimanê xwe bibin tê zanîn.

### Yekem sazî ye bi navê 'Kurd'

Komeleya Kurd-Derê ya Enqerê di sala 2004'an de hatiye damezrandin. Kurd-Der li Enqerê yekemîn sazî ye ku bi navê kurd e. Helbet di damezrandina Kurd-Derê de gelek zehmetî hatine kişandin. Dewletê li ber komeleyê gelek astengî derxistine. Lê belê xebatkarên Kur-Derê gelek bi biryar bûne wê demê gelek pirsgirêk çêbune lê paşê ew hemû sererast bûne. Komele bi hewleke balkêş hemû astengiyên li ber xwe dane aliyekî û ji sala 2004'an vir ve xebatên xwe dimeşîne. Destpêkê li ser roj û kesayetiyên girîng hatiye bi bîr anîn û panel û sempozyuman li dar xistine. Xebatên li ser ziman jî di 2008'an de dest pê kirine û xurt bûne. Aboriya komeleyê li ser alîkariya endamên komeleyê ye û ji xwendekarên xwe bexş distînin. Serokê Komeleya Kurd-Derê Mustafa Karaman ku kurdekî ji Anatolyayê ye, ji sala 2011'an ve jî serokatiya komeleyê dike. Di komeleyê de bi sê zaravayên kurdî qursên ziman tên dayîn. Soranî polek e, dimilkî polek e, yazdeh pol jî kurmancî ne, ango sêzdeh polê de xebatên ziman dimeşînin. Li gor agahiyên ku rêvebirên komeleye didin bo fêrbûna ziman li Enqere'yê daxwazeke mezin heye û bi taybetî jî bo fêrbûna kurmancî eleqeyeke balkêş derketiye holê. Her ku diçe jî serlêdan zêde dibin.

### 'Em ne li benda dewletê ne'

Biryara komeleyê a herî girîng; ji daxwazên xwe yên li ser zimên venagerin. Karaman di derheqê xebat û çalakiyên komeleyê de agahî dan BasNûçe û wiha domkir; "Em vê gavê rêbazên xweseriya demokratik ji bo zimanê xwe jî bi kar tînin. Em ne li benda dewletê ne ku di vî warî de ji bo me bibe alîkar. Emê di warê kurdî de karê xwe bixwe bimeşînin. Daxwaza kurdan li ser zimanê kurdî ye û muzakereyên navbera dewlet û PKK'ê biqede jî neqede jî emê karê xwe bimeşînin û zimanekî standart pêk bînin. Armanca komeleyê ew e ku ji perwerdahiya dibistana seretayî bigire heta dibistanên amadeyî, kurdî bibe zimanê perwerdehiyê û ciwanên kurd ên li zaningehên Enqere'yê dixwînin û bi kurdî nizanin re bibe alîkar û wan fêrî zimanê kurdî bike. Ne tenê ciwan, hemû kesên ku dixwazin zimanê kurdî fêr bibin."

### 'Divê kurd ziman û çanda xwe biparêzin'

Ako Êxtiyarî ku ji Rojhilata Kurdistanê ye û li komeleyê mamosteyê bêşa soranî ye jî dide zanîn ku kurd di warê yekbûna ziman de li paş mane û divê standardizasyona kurdî tavilê pêk were. Extiyarî ku ji ber tundiya dewleta Îranê naçar maye û ji Kurdistanê koç kiriye û hatiye Tirkiye'yê piştî hin xebatên cûrbecûr li komeleyê dest bi mamostetiyê kiriye û di nava xebatên komeleyê de cîh digire. Extiyarî di axaftina xwe de bal kişand ser nêzikahiya Îranê jî û wiha got, "Dewleta Îranê mafên netewî yên kurdan qebul nake. Wekî dewleta tirkan e. Herdu dewlet jî wek hev in û destûrê nadin ku kurd bi çand û zimanê xwe bijîn. Ez bi taybetî dixwazim xizmetê bo zimanê kurdî bikim. Nêzikbûna her du dewletan jî mîna hev e. Lê belê peşketinên Tirkiye'yê ji yên Îranê baştir in. Ji ber vê yekê jî divê kurd girîngiya vê bizanin. Li Kurdistana Bakur herî zêde zaravayê kurmancî tê bikaranîn. Ez bixwe bi soranî diaxivim û dixwazim ku soranî jî wekî kurmancî pêşkeve. Ez rewşa kurdî baş dibînim. Her ku diçe baştir dibe û ez hêvîdar im ku dê baştir bibe."

### 'Ez neviya kurdînezan a dapîreke tirkînezan im'

Berivan Yıldırım ku ji eslê xwe ji Êlihî ye lê belê li Stenbolê mezin bû ye û niha li Zankoya Haettepe'yê di bêşa dîrokê de xwendekar e û di nava xebatên kolemeyê de jî cîh digire jî tîne ziman ku filitîna kurdan tenê bi rêya ziman pêk tê û divê kurd bêhtir giringiya zimanê xwe zanibin. Yıldırım dide zanîn ku heya çend sal berê astengî û bendên mezin li ber kurdî hebûne lê niha hin derfet derketine û divê kurd van derfetan baştir bikarbînin û bo zimanê xwe bêhtir baldarbin. Yıldırım wiha axivî, "Ev sînor ne tenê di nav çar parçeyên Kurdistanê de ne. Ev sînor di nav çar diwaran de jî hene. Bifikire ku ez ji dapîra xwe fêm nakim û ez neviya kurdînezan a dapîreke tirkînezan im. Ev yek xwe nasnekirin e. Ziman yek ji tiştên herî girîng ê mirov e û ziman vîjdana mirov e. Çi mixabin ez xewnên xwe bi kurdî nabînim. Ji ber vê dilê min her tim diêşe. Ez naxwazim kesek wekî min vê êşê bikşîne. Kurd-Der ji bo me bû ye navnîşan. Ez diçim û zimanê xwe hîn dibim. Jixwe piştî du sê dersan mirov gelek xwe pêş dixe. Ez zimanê xwe gelek hez dikim û dixwazim her kurd çand û zimanê xwe nas bike û biparêze."





# Li zanîngehan dema fanzînan

**Emin Badiki**

Bizava derxistina kovarên Fanzînî ku bi xwendekarên lîsansa Kurdolojiyê ya Mêrdînê destpê kiribû û dû re li Zanîngehên Mûş Alparslan û Çêwlikê jî belav bû, rû da. Fanzîn çi ye? Fanzîn; kurtkirina peyvên FANatic û magaZÎN e. Fanzîn cûreyeke kovaran e ku ew kovar, amator û azad in, alternatîfeke kovargeriyê ye. Bi piranî wek fotokopiyê tên belavkirin û bi piranî nayên firotin.

### Çapeminiya kurd rengîntir dibe

Di dîroka kurd û Kurdistanê de gelek rojname û kovar hene. Yekemîn rojnameya kurdî a bi navê "Kurdistan"ê di sala 1898an de li Qahîreya Misirê ji aliyê Mîqdat Mîdhed Bedirxan ve hatiye derxistin. Ji wê rojê vir ve gelek rojname û kovar di nava çapemeniya kurd de cih girtine. Ji ber çarparçekirina Kurdistanê di nav çar dewletan de, bişaftina dewletên dagirker ên kurdan, perwerdehiya kurdî gelek qels maye û zimanê rojnamegeriya kurd jî ji bişaftina li ser zimên para xwe stendiye. Li dijî van bişaftinan, gelek hewldan hene ku bo vejîn û pêşveçûna ziman û çanda kurdî têdikoşin. Yek ji van têkoşînan jî, ev e ku xwendekarên beşa Kurdolojiyê ya Zanîngeha Artûklûyê ya Mêrdînê ku fanzîneke bi navê "Vejîn Fanzîn"ê derdixin û di nav xwendekaran de belav dikin. Me jî ev kar pîroz dît û li ser vê hewldanê bi xwendekaran re axivî.

### Ji bo ku xwendekar mijûl bibin û binivîsin me hewl da

Xwendekarê bi navê Mehmed Emîn Cirik ku di beşa kurdî di pola çaremîn de ye, li ser xebatên wan e fanzînê anî zimên ku; "Me xwest ku xwendekarên ku nû hatine beşa kurdî an beşa edebiyatê, ji wan re nivîsaran binivîsin, çi ceribandin, çi rexne çi çîrok, çi helbest û hwd. Ew kesên ku nivîsaran dinivîsin û ew nivîs tên çapkirin, hêviyeke wan çêdibe bo pêşerojê, ka dikare helbest, çîrok û hwd binivîse an? Dikare bibe helbestvan an nivîskar an rexnegîrekî bo edebiyata kurdî? Armanca me ya ewil a derxistina vê kovarê ev bû. Yanî me dixwest ku xwendekar di warê wêjeyê de xwe bi tiştekî biceribînin, mijûl bibin ku binivîsin. Ji ber ku. Çapa yekem a kovara Vejîn Fanzînê divê meha mijdarê de derketa lê belê, ji ber ku ji çapxaneyê pirsgirêkek derket me çapa xwe ya yekem di Adara 2014an de çap kir.

Çapxane guh nedidan me

Li ser fikra derxistina vê kovarê Mehmed Emîn Cirik got ku; "Mamosteyê me Îrfan Amîda ji me re got, kovarekê derxin wê baş bibe. Em bi xwe ne bawer bûn bi rastî. Payîza borî em çar heval civîyan. Me got em vê kovarê derxin. Ji xwendekarên lîsansê me nivîs xwestin. Me hejmara xwe ya yekem hinekî dereng derxist. Ji ber ku çapxane guh nedidan, çimkî fanzîn bû, çap nedikirin, qîma xwe pê nedianîn. Em diçûn kîjan derî, derî ji me re girtî bûn. Di dawiyê de me di çapxaneyekê de çap kir û di nav xwendekarên kurdolojiyê de belav kir. Dû re li Mêrdînê, li Amedê, li Mûşê, li Stenbolê bi destên xwe me belav kir. Me dişand ji hevalên xwe re, wan ji belav dikirin. Û me ew dan pirtûkfiroşên kurdî. Aniha me hejmara sêyem derxist. Wê demê pêşangeha pirtûkxaneya Amedê nû vebûbû. Hejmara sêyem jî wê rojê derket. Me hêvî dikir ku her mehê carekê em kovara xwe derxin lê ji ber pirsgirêkên aborî ev tişt pêk nehat. Me pereyên xwe jî ji mamosteyên xwe yên beşa Kurdolojiyê dixwestin. Her wiha carinan nivîs jî dereng dihatin, an jî me dişand çapxaneyê, ji çapxaneyê dereng derdiket. Ji ber van sedeman derxistina kovarê birêkûpêk çênedibû. Gava nivîs temam dibin em hejmara xwe derdixin, û em ê her derînin jî. Ez di pola 4an de me, min zanîngeh qedand. Dibe ku têkiliya min dê qût bibe. Lê em hêvîdar in ku hevalên li pey me tên, ew jî wek me xebatên xwe bihêztir û baştir bikin, edebîtir bikin û berdewam bikin. ''

### Xwendekarên ku nivîsên xwe dişînin kesên pispor nîn in

Xwendekara bi navê Aynûr Ili ya ku ew jî li Kurdolojiya Mêrdînê, Lisansa Bilind a Bêtez xwendiye û îsal jî di lîsansa kurdolojiyê, di pola 1ê de dixwîne anî ziman ku; "Fanzîn cureyeke kovarê ye, lê asta wê ji kovarê kêmtir e, xebateke profesyonelî naxwaze, amator e. Ji ber vê me navê "Fanzîn"ê daniye. Ji xeynî vê, di nava fanzînê de kesên ku ne di beşa kurdolojiyê de be, nikare ji vê kovarê re nivîsaran bişîne. Ew xwendekarên ku nivîsên xwe dişînin jî kesên pispor nîn in. Ji ber vê me got bila navê wê bibe fanzîn. Em tu taybetiyan di nivîskaran de nagerin bi rastî. Beriya ku em kovarê derînin em wek qaxizekê ji înternetê derdixin û dibêjin; em li hêviya nivîsên we ne. Malpereke me heye bi navê Vejîn Fanzînê. Hevalên me nivîsên xwe ji wirê ji me re dişînin, em jî di nav komîsyonekê de, nivîsaren ku em ê biweşînin hildibijêrin, da ku em çap bikin.

### Bila bi kurdî be, qala çi dike bila bike

Xwendekar Mehmed Emîn Cirik anî zimên ku ; "Li înternetê gmaîla me heye wek vejîn fanzîn. Beriya ku em hejmarekê derxin, bo agahdariyê em fotokopiyekê derdixin, Em wan kaxizan dîwar an jî deriyên çar polên lîsansê dadilaqînin. Em dibêjin heta vê tarîxê nivîsên xwe bişînin. Dû re 3-4 heval em di navbera xwe de nivîsên baş hildibijêrin. Em bixwe nivîsan redakte dikin û mîzampajên wan jî em bixwe dikin û dişînin çapxaneyê. Ji hêla aboriyê ve em perê ji mamosteyên xwe yên beşa kurdolojiyê distînin. Ew alî me dikin. Em carinan kovarê difiroşin, lê pirî caran em bê pere belav dikin ji xwendekaran re. Ji ber ku rewşa xwendekaran pir nebaş e. Em dibêjin bila bi kurdî be qala çi bike bila bike. Mesela kovarên din ên kurdî jî hene, ên ciddî. Bo nimûne; Kovara Wyê heye, Çirûsk heye, Zarema, Wêje û Rexne hene. Ew kovar hinekî din ciddî ne. Xwendekar ditirsin ku nivîsan bişînin wan. Bi xwe bawer nakin. Lê di Vejîn Fanzîn de tiştekî wisa tune. Ji sedî nod, ji sedî sed em diweşînin ji bo ku hêviya wî kesî neşikîne.

### Em ê bi Zanîngehên din re konferansêkê li dar bixin

Piştî ku li Zanîngeha Artûklûyê ya Mêrdînê kovareke bi navê Vejîn Fanzin derket, li zanîngehê din jî hewildanên wisa çêbûn û li zanîngeha Mûş Alparslanê , Zanîngeha Çewlîkê jî "Fanzîn" hatin çap kirin. Li ser belavbûna kovargeriya fanzînî, xwendekar Mehmed Emîn Cirik da zanîn ku; "Di serî de me Fanzîn derxist. Têkiliya me bi Zanîngehên din re zahf tunebû. Dû re hinek hevalên me ji zanîngeh^n din hatin zanîngeha me. Bi vî awayî me hevdû nas kir. Wê demê li pêşangeha pirtûkan a Amedê bi tesadufî me hevdû dîtin. Ez bawer im wê yekitiyekê çêbibe û xwendekar dê konferansê jî li dar bixin. Di navbera xwe de me bi vî awayî biryar da. Aniha li ser vî tiştî xebatek tê meşandin. Hevalên li Mûş û Bedlîsê jî difikirin ku bi hev re li ser kurdolojiyê, li ser pirsgirêkên wê, her carê li zanîngehekê dê konferansekê li dar bixin. Wê cara ku me li Amedê jî hevdû dîtin, me got ku piştî demekê ji bilî fanzînê em ê wek her sê zanîngeh bi awayekî berfirehtir kovarekê jî derxin."








# Li Amedê ciwankariya çîniyan

Mehmet Emin Kan

Pişeya destkarî ya çînî ku bi nexş û motîfên cihê têne xemilandin ji Amedê hinardeyî gelek deverên cîhanê dibe. Yekbûn Yaş ku yek ji jinên ku li Amedê vê pîşeyê pêk tînin e, li kargeha xwe, karê çîniyê pêk tîne û berhemên bêhempa derdixe hole dibêje: "Nexşên çîniyên min sîtava derûniya min e. Dema ez dest bi kar dikim, çi di dilêmin de hebe li ser çîniyên min tê xêzkirin." Çîniyên ku Yekbûn Yaş çêdike û dinexşîne, ji Vatikanê re û ji gelek serokdewletan re têne şandin.

**Çîniya kurdewar**

Çînî, bi pêjandina heriyên taybet û piştî pêjandinê bi teşekirina vê çamûrê tê hilberin. Bêguman piştî pêjandin û bi teşekirina wê çamûrê kar naqede û mirov dikare bêje ku karê eslî yê çînîkariyê piştî vê pêvajoyê destpê dike. Lewre piştî vê pêvajoyê ew tê boyaxkirin û nexşandin. Çînîkariya ku pîşeyekî kevnar ê erdnîgariya mezopotamya ye, di hemû serdemên dîrokê de pîşeyekî pir populer bûye. Ev pîşeya ku di dema Osmaniyan de pir gelemper bûye, piştî demeke dirêj a bêdengiyê, ji nû ve weke pîşeyekî hunerî dîsa di rewacê de ye. Ev pîşeya ku di van salên dawî de li Amedê jî ketiye rewacê û bi motîfên nû yên kevneşopiya kurd ji nû ve tê geşedan.

Yekbun Yaş'a ku ji zaroktiya xwe ve meyla wê li ser hunerên destkariyê ye, ji ber vê meyldariya xwe pêk bîne, li Bursayê, dest bi beşa çînîkariyê ya Zanîngeha Uludağê dike. Piştî pisporiya vê pîşeyî, di sala 2003'an de bi mebesta ku hostehiya xwe di pratîkê de pêk bîne, tê Amedê û li Şaredariya Amedê dest bi mamostetiya vê pîşeyê dike. Hingê, gellek kesên ku gunden wan hatine valakirin, jinên malan, keçikên bê pîşe têne şaredariyê û beşdarê perwerdehiya çîniyê dibin. Piştî ku kargeha şaredariyê tê girtin, li Xana Hesenpaşayê kargehekê vedikin. Dûre li sûka mala dengbêjan kargeheke baştir û mezintir vedike û afirandina berhemên çîniyan didomîne. Yekbûn Yaş, di derbarê motîfên ku li ser berhemên xwe dinexşîne de wiha got:

"Li hemû dinyayê dema motîfên li ser çîniyan tê gotin, teşeyên kulîlkan tê bîro mirov. Di motîfên me de jî kulîlk hene. Lê belê em ji motîfên kulîlkan bêtir, motîfên kelepora kurd bikar tînin. Dema ku ez hatim Amedê, di dilê min de ev tişt hebû ku ez li ser çîniyan motîfên neteweyî yên kurd binexşînim. Bi vê armancê min hin lêkolînan kir. Min xwest ku ji çîrok ,destan ango ji mîtolojiya mezopotamyayê sûd wergirim. Bi vê mebestê min motîfên çîniyên xwe bi teşeyên kevneşopiya kurdewar dewlemendtir kir. Her wiha min ji xwezayê sûd wergirt. Min endemîkên ku tovên wan pir kêm bûne û li ber wundabûnê ne bikar anî. Her wiha min li ser çîniyên xwe teşeyên nebat, cil û berg û hemû tiştên din nexşand. Zingelok, navnavk, bûk û zava, guldexwîn û gellek motîfên din ên ku tenê li Kurdistanê hene. Ez wan motîfan ji nûh ve şîrove dikim, bi drûv dikim û li ser çîniyên xwe xêz dikim. Nexşên çîniyên min naşibin nexşên din ên çîniyan"







**'Nexşên çîniyan ji hev cuda ne'**

Yekbûn Yaş di derbarê perwerdehiya vê pîşeyê de da zanîn ku li Tirkiyeyê, li gellek zanîngehan beşên çîniyê hene û di van salên dawî de gellek kurdên ku vê beşê xwendine hene û dibêje: "Lê belê tenê xwendina beşê têr nake. Ji bo pêkanîna vê pîşeyê wêrekî, zanebûn û xwestek pêwîst e. Ez çîniyên xwe û motîfên ser wan li gor dilê xwe çêdikim. Ew roj dilê min çi bixwaze, ez wan tiştan dinexşînim. Ez her roj bi hêviya ku ez karekî baştir pêk bînim şiyar dibim. Piştî ez tême kargeha xwe, dest bi wî teşeyê ku di serê min de der bûye dikim û ew roj ez serê xwe bi wî diêşînim"

Yaş, ji bo berhemên baştir û xweşiktir bêne afirandin pêwîstiya naskirina xwezayê destnîşan kir û bi anî ziman ku divê mirov zanibe ka ew ê dikaribe kîjan motîfan bikar bîne. Yaş got: "Mirov nikare her motîfan li ser her sênî û vazoyan binexşîne. Motîfên tabloyan cudatir in, yên sêniyan cudatirin û yên alavên din jî cudatir in. Di pîşeya çînîkariyê de ev xal pir grîng e. Divê mirov rengan baş nas bike. Gava mirov ji nû ve pêşnûmayên xwe pêk tîne. Mirov nikare wêneyên xwezayê yan jî yên kulîlkan bi ser çîniyan ve deyne. Di destkariya çîniyan de ev ne pêkan e. Ango rê û rêbazên nexşandina cûreyên çîniyan ên ku ji hev cuda ne hene û divê mirov di derbarê van rê û rêbazan de şareza be"

Yaş da zanîn ku niha li Kurdistanê, li hin bajarên din jî kargehên çîniyan vebûne, lê belê meyla kesên ku di van kargehan de pîşeya çîniyê pêk tînin li ser domandina şêweya çîniyên dema Osmanî ye. Yaş wiha dom kir: "Armanca min ew e ku ez bersiva pirsa 'Gelo çima çîniyên ku bi motîfên kurdewar hatine nexşandin tune ne?' bidin û rengên kurdewar li çîniyên xwe bar bikin. Bi vê armancê ez dixwazim ku çîniyên min kurdewar bin û vê pîşeyê û berhemên wê bi kurdan bidim hezkirin"

**'Nexşandin terapî ye'**

Yekbûn Yaş di domîna axaftina xwe de da zanîn ku nêzîkî 10 salan mamostehiya vê pîşeyê kirî ye, heta niha ji 400'an zêdetir şaqirt perwerde kirine û di siberojê de jî ew ê karê perwerdekirinê bidomîne. Yaş her wiha da zanîn ku ew her sal 6 mehan kûrs vedike û perwerdehiya vê pîşeyê dide, kesên ku vê kûrsê wek hobî dibînin hene, lê belê di nav şagirtên wê de kesên ku bi rastî jî hewl didin ku vê pîşeyê hîn bibin û di vê pîşeyê de şareza bibin jî hene. Yaş got: "Ev karê min ji bo min wek terapiyê ye. Dema ez karê xwe dikim ez xwe terapî dikim. Di hemû pîşeyên hunerî de ev tişt heye. Bi vî awayî mirov hem xweştir kar dike hem jî jiyana xwe watedartir dike. Ger mirov bi çavekî bazirganî li vî karî nenihêre, mirov dikare berhemên baş biafirîne"

**'Hunerên baş mayînde ne'**

Di derbarê zehmetiyên vê pîşeyê de jî Yaş anî ziman ku wek her pîşeyê zehmetiyên vê jî hene, mesrefên firûnkirinê, bûhayê textan pir giran e û ev yek mirov pir diwestînin. Yaş wiha got: "Ez dikarim bêjim ku karê çînî ne pir zehmet e, lê belê qonaxên afirandina wê pir in. Rîskên wê hene, lewre em ew di hezar piyeyî de dipêjînin û dibe ku di qonaxa pêjandinê de çînî bişikê jî. Kiröyar tên û çîniyan dikirin. Dixwazin ku ji hezkiriyên xwe re wek diyarî bikirin an jî ew bixwe jê hez dikin û dixwazin wek berhemekî hunerê pê mala xwe bixemilînin. Lê belê ew nizanin ku heta ev çînî bi nexş û motîfên xwe amade dibin di çi qanoxan de derbas dibin" Yaş, da zanîn ku li gel Papayê Vatîkanê, çîniyên wan ji gellek serokdewlet û rayedarên dewletên din re hatine diyarîkirin û axaftina xwe wiha wiha qedand: "Bi diyarîkirin û kirîna van kesên grîng, berhemên min têne nasîn û ev jî ji bo min serbilindî ye. Kî li wê berhemên min dinêre ez tême bîra wa. Ji ber vê yekê karê min û berhemên min pir bi nirxdar in. Hunerên baş mayînde dibin û ez bawer dikim ku berhemên min jî mayînde bûne û ji ber vê yekê ez pir kêfxweş im.